

Azadiya Welat

**Kurd, medyaya serdest mereq dikin**

▶ 7



نەوزاد هادی:

**دادگەی هەولێر دەبێتە مۆزەخانەی ئەنفال**

2 ◀



Dr. Jutta von Freyberg:

**"Ich habe mein Herz an Kurdistan verloren"**

▶ 10


# Rûdaw

Hejmar: 9
1 Îlon 2009
www.rudaw.net

ÇAPA EWRÛPA





Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Denmark 15,00 DKK

Nr. 9 |1. September 2009 | Dienstag




## Kurd serokkomariyê ji dest didin?

**Elî Heme Salih**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Ji bo Lîsta Hevpeymana Kurdistanê hilbijartinên vê carê yên Îraqê ji hilbijartinên berê cudatirin. Kurd hem di asta Kurdistanê û hem jî di asta Îraqê de li beramberî du astengên mezin in. Li gor çavdêrên siyasî derbaskirina van astengan ji bo YNK'ê û PDK'ê karekî dijwar e. Ji ber vê yekê jî çavdêr li bendê ne ku di hilbijartinên Îraqê de Kurd ji rêza dûyem dakevin û bibin hêza sêyem yan çarem û li şûna serokkomariyê, serokatiya parlamena Îraqê bidest bînin.

▶ 3

Berpirsê Peywendiyên Derve yê PDK'ê Sefîn Dizeyî:

## Berî konferansa netewî divê helwesta Enqerê diyar be



(Wêne: Rûdaw)

**Wladimir van Wilgenburg**

**Pîrmam (Rûdaw)** - Berpirsê Peywendiyên Derve û kevnenûnerê PDK'ê yê Enqerê Sefîn Dizeyî di derbarê pêşveçûnên dawîn yên Kurdistanê de pirsên Rûdawê bersivandin. Dizayî di derbarê pêşeroja hikûmeta nû de jî axifî û got heta niha ne diyar e, wê Nêçîrvan Barzanî karekî çawa bike. Dizeyî di derbarê kongreya PDK'ê jî got, ku di kongreyê de wê kesên nû derkevin pêş. Li gor Dizeyî ji bo pêkanîna kongra netewî ya Kurd jî divê helwesta dewleta Tirk ya di derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd de diyar bibe. ▶ 8

Kurdên Rojhilat:

## Ji otonomiyê berbi federasyonê



**Sabîr Qadirî**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Piştî rûxana rejîma Baasê li Îraqê piraniya hêz û aliyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê stratejî û dirûşmên xwe guhertin û ji dêlva otonomiyê niha sîstema federalîzmê wekî şêwaza herî guncav ji bo pêşeroja Îranê dipejirînin. Berpirsên PDKÎ van guherînan wek encama rûxana Rejîma Baasê û modela Başûrê Kurdistanê qebûl nakin. Rêxistina Komela jî bilindkirina wê dirûşmê wekî guhertinek stratejîk bi nav nake. ▶ 8





(Wêne: Diha) Photoshop: Rûdaw

**Amed / Köln (Rûdaw)** – Bi nîqaşên çareseriya pirsgirêka Kurd ve rewşa girtîgeha Amedê jî hat rojevê. Wezîrê Çandiniyê Mehdi Eker yê Hikûmeta AKP'ê hefta borî wek beşekî aştkirina Kurdan pêşniyaza girtina zindana Amedê kir. Li gor AKP'ê divê ev zindan bê girtin û li şûna wê dibistanek bê vekirin. Li aliyê din Kurd li hember vê pêşniyaza AKP'ê helwesteke tund nîşan didin û dibêjin 'divê zindana Amedê wek muzaxane bê parastin.' Ji bo parastina zindana Amedê niha li Bakurê Kurdistan, Tirkiyê û Awrûpayê çendîn înîsyatîf hatine damezrandin ku daxwaza vekirina muzexaneyekî li vê zindanê dikin.

Wek tê zanîn zindana Amedê di dîroka nûjen ya Kurdên Bakur de wek sembola berxwedan û zilma rejima Tirk tê zanîn. Di navbera salên 1980 û 1997'an de bi sedan siyasetmedar û welatparêzên Kurd, ku di nava wan de damezrênerên PKK'ê Mazlûm Doğan, Kemal Pîr, Mehmet Hayri Durmuş û Necmettin Büyükkaya jî hebûn, di vê zindanê de bi îşkencê hatin kuştin, bi hezaran kes brîndar bûn û ewçend jî kes salên dirêj di vê zindanê de man.

Ji girtiyên kevn yên vê zindanê, ku li wir bi salan işkence dîtine, siyasetmedarên Kurd Mehdi Zana, Nurettin Yılmaz, Dr. Işık İşcanlı, Şerafettin Kaya, Selim Çürükkaya, Nuran Maraşlı, Şerif Kaplan û Celalettîn Canê ji Rûdawê re ragihandin ku divê ev zindan wek kampên Naziyan wek muzexaneyekî bê parastin. Mexdûrên zindana Amedê dibêjin "Ji bo pêşeroja me, ji bo zarokên me dîroka xwe nas bikin, divê girtîgeh bibe muze."

Li aliyê din roja 28'ê tebaxê li Amedê li pêşiya deriyê zindanê daxuyaniya çapemeniyê hat dayîn. Komîsyona Lêkolîn û Dadê ji bo Zindana Diyarbekirê û Komeleya Mafên Mirovan (İHD) daxuyaniya Mehdi Eker rexne kirin û bi mabesta "Divê girtîgeh bibe muzeya mafê mirovan" kampanya îmzeyan dan destpêkirin. Çend ji kevne zindaniyên Amedê di derbarê mijarê de hest û ramanên xwe ji Rûdawê re wiha anîn ziman: ▶ 8

## Ji Kurdan re qedexe, ji Ereban re serbest e

**Qamişlo (Rûdaw)** - Bi derketina "Mersûm 49" ya sala 2008'an tevgera avakirin, kirîn û firotina mal û eqarên herêmên Kurdnîşin bi temamî hate pûçkirin. Ji wê demê ve Kurd nikarin xaniyekî bikirin an jî bifroşin. Hemû derûdorên siyasî û çavdêr ev gav bi gaveke taybet ji bo herêmên sînor binav kirin, wek gaveke xerab ku rasterast li dijî Kurdan û bi armanca feqîrkirin û serîtewandina wan hatiye avêtin.



Berevajî herêmên sînor yên ku Kurd lê dijîn, ji bo wan herêman biryarên taybet di derbarê hesanîkirin û teşwîqkirina avakirin û kirîn û firotina eqaran, têne girtin. Biryara dawî ji alî wezîrê avakirinê yê hikûmeta Sûriyê hat derxistin. Di vê biryarê de ji bo herêmên sînor yên derûdora Şam û Qunêtra û Derayê bihayê destûrgirtina avakirinê ji sedî 50 hat daxistin. Bi vê biryarê tevgera avakirin û kirîn û firotina eqaran bi awayekî rasterast hate geşkirin.

Li aliyê din li gel vê yekê çapemeniya Sûriyê di demên dawîn de nûçeyên derew li ser geşkirina rewşa aboriya parêzgeha Hesekê, ku heremeke Kurdnîşin e belav dike. Pêre rojane malên Kurdan bi behaneya destûrnewergirtinê têne xerakirin. Kurdên niştecihên herêmên sînor rojane ji ber tunebûna kar û pûçkirina jiyana aborî berê xwe didin bajarên mezin û li derûdora wan bajaran di malên ji tenekeyan de dijîn.

Çavdêr dibêjin, eger heman yasayên ku ji bo herêmên sînor yên ku Ereb lê dijîn, ji bo herêmên sînor yên ku Kurd lê dijîn bihatina derxistin, wê rewşa Kurdan jî li wan herêman ber bi başî û aramiyê ve biçûya. Ji ber ku rejima Şamê siyaseteke taybet û awarte li herêmên Kurdan dimeşîne, roj bi roj rewşa Kurdan li Sûriyê xerabtir dibe.




## Tu jî zimanê xwe derxe!



**Köln (Rûdaw)** - Malperek bi gelek diruşm û wêneyên balkêş dest bi weşana xwe kir. Rêvebirên malperê, xwe wek 'kesên li kêmasiya' (errorist wanted) digerin binavdikin. Malper ji alî xwendekaran tê derxistin û daxwaz dike ku herkes 'zimanê xwe derxe!' Navnişana wê www.qwx2009.org e.

Di malperê de bi sedan wêne hene ku tê de her kesî zimanê xwe derxistiye. Di wêneyan de jin, mêr, zarok, kal û pîrên ku zimanê derxistinê cîhdigrin. Armanca malperê û kesên ku zimanê xwe derxistine jî, protestoya qedexekirina tîpên kurdî yên "Q, W,X" ye. Li gor sernivîsara malperê, çalakiya hunerî "QWX - Zimanê xwe derxîne", li dijî polîtîka Komara Tirkiyê ye, ku bi darê zorê grûbên etnîkî yên ne Tirk dixwaze bi her awayî asîmîle bike û civateke homojen pêk bîne. Rayedarên malperê herwiha di wê baweriyê de ne ku bi vê tevgera zimanderxistinê, îmaja îteatkar û rûkenî, ku dewlet ji "yên din ên hundir de" dixwaze, tê ruxandin. Herwiha tê gotin ku, rûyekî zimanderxistî, ji desthilatdaran re nerazîbûna xwe dide xuyakirin.

Armanca vê aksiyona internetê, afirandina platformeke hevbeş ya berxwedana li hemberî feraseta "yek ziman, yek çand" e. Malperê herwiha bi sedan wêneyên mirovên ku ziman derxistine civandiye. Di malperê de derbarê tevgerê de wiha tê gotin: "Nexşa me dixwaze vê peyamê li daxwaziya gelên Tirkiyê ku xwe wek Tirk nahesibînin û zimanê wan ê zikmakî tirkî nîn e, bi pejirandina cudabûna wan û perwerdekirina bi zimanê xwe yên zikmakî, girê dide. Herwiha nexşa me, ji gelên bêziman û bênav re rawa dide û bi bîrtîne ku hêza hunerê, wek bizaveke li dijî neheqiyê bi kar bînin. Ango, zimanderxistin amûreke ku mirov pê dikare cudabûna xwe ya hundirîn bide diyarkirin."




## 14 CD'yên nû

**Firaz Baran**

**Neuss (Rûdaw)**- Mîr û Huner Muzîk wê di festîvala navnetewî ya Kurdistanê de ku di 12'ê îlonê de tê lidarxistin çardeh berhemên nû yên muzîkê derxin. Berhemên kû ji alî Mîr Muzîkê ve têne derxistin ev in:

Aram Dîkran: Kurdno dest bidin hev, Bang: Senî Vaza, Deniz Deman: Dûrî, Husênê Hamê: Heval, Serdar: Vîlike, Serhado: Xeyala Evîn, Sena Dersimî: Azdanê, Sîpan Xelat: Bêrî û Cihan Çelik: Pêpûk.

Berhemên kû ji aliyê Huner Muzîkê ve derxistin jî ev in: Axîn: Azadiyê Digerim, Rêzan, Zozan û Margêt: Birîna Min, Koma Hezex: Roja Kurda, Ciwan: Nazikê û Zerdeşt Mêrdînî: Me Nave Bindestî.

Berhema dawîn ku wek wesiyeta Aramê Tîgran tê nasîn, ji aliye Kakşar Oramar ve hatiye amadekirin. Oremar dibêje , Aram di havîna 2006'an de li bajarê Almanya Düsseldorfê li studyoyên Mîr Muzîkê şeş klamên nû tomar kiriye. Memo Gül û Metin Kalaç ew klaman aranje kirine. Oramar dibêje "Mamosta dixwest kû CD'yê kê çebike, lê derfet çenebû. Di nav berhema dawîn ya Aramê Tîgran de panzdeh klam hene." Neh klam yê kevn in. Klamên nû yên ku di nav CD'yê de cîh digrin ev in: "Herkes Gihîşt Serxwebûnê, Ew Meşa Te, Delal Ha Yê, Penaber, Alagiyaz (Bi zimanê ermenî) û Gelê Kurd." Kakşar Oremar, ku li ser Aramê Tîgran pirtûkekî nivîsandiye dibêje, pirtûk ber bi xelasbûne de ye. Oremar wê klamên Tîgran jî tevî notayan di pirûka xwe de biweşîne.



Di nav hunermendên nû de Bang gelekî bal dikşîne. Me li klamên Bang guhdar kirin. Di stranên Bang de Kurdbûn xwedî dengekê cûda ye. Mirov dikare beje gotin û stîla Bang bi temamî qêrînek e. Bang, diherike, bang dike û tekoşîna Kurdan bi motîfên hestiyarî, modern ve lez tîna cem hev. Bang, Kurdekî navçeya Çermîka Amedê ye. Bi kurmancî, dimilkî, almanî û tirkî stranan dibêje. Aranjor Memo Gül ji bo wî wisa diaxive: "Rêya wî vekiriye. Li gor min pêşaroja Bang geş e."

## Medya ket rojeva medyayê


(Wêne: Diha)

**Amed** - Dozgeriya Komarê ya Amedê, bi boneya Medya ya 10 salî li mala xwe dersên kurdî daye di derbarê wê, malbata wê û Şaredarê Sûrê Abdullah Demirbaş de lêpirsîn ve-kir. Endam û rêveberên KUR- DÎ-DER, TZPKurdî û Komeleyên Niviskarên Kurd bi armanca şermezarkirina lêpirsinê piştgiriya Medya kirin û çûn serdana wê. Di serdanê de li ser navê piştgiran Sekretara Giştî ya KURDÎDER'ê Mekiye Ormancı, helwesta dozgeriyê bi awayekî tund rexne kir û diyar kir ku ev polîtîkaya dewletê ya 80 salan e. Ormancı, rêbazê dersdayina Medya wek şerma dewletê nirxand û wiha got: "Ger ku dewletê derfetên perwerdeya kurdî li dibistanan dabûya zarokan, wê demê rewşeke wiha rûnedida. Li şûna ku dewlet rê li pêşiya perwerdeya kurdî veke, li zarokên ku li mala xwe ferî zimanên xwe dibin û dersê didin lêpirsînê vedike. Mînakên bi vî rengî li tu devera cîhanê nehatiye dîtin." Serokê Enstîtuya Kurdî Aydın Alükmen jî bibîrxist ku axaftin û fêrbûna zimanê zikmakî yek ji mafê mirovan yê bingehîn e: "Em lêpirsîna dozgeriyê şermezar dikin û heta dawiyê piştgiriyê didin Mamoste Medya."

Medya ku 10 saliye û mala xwe kiriye wek dibistanekî, dibeje ku ew pir bextewer e û ewê dersên kurdî berdewam bike. Di destpêkê de 4 şagirtên 'Mamosta Medya' hebûne, niha hejmara wan gihiştiye 27 an.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net · **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de
**Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81
**Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)

## Keçên Silêmaniyê baleyê dikin


(Wêne: Rûdaw)

**Hêvî Letîf**

**Silêmanî (Rûdaw)** – Jîla û Jalya dû xwîşk in. Ew di 02.06.2009'an de li gel 6 keçên din li Fêrgeha Baleya Silêmaniyê dewam dikin. Herdû jî xwendekarên Xwendingeha Makwan a seretayî ya Silêmaniyê ne, gruba wan li fêrgehê wek Grûba B tê naskirin û ji heşt kesan pêk tê, piraniya wan temen 10-11 salî ne.

Cara yekem e li Herêma Kurdistanê bale bi vî awayî tê pêş. Di sala 1567'an de, bale destpêkiriye û hêdî hêdî bipêşve çûye û di nav tevahiya gelên cîhanê de belav bûye û gelek fêrgehên baleyê li Rûsya, Amerîka, Îtalya û seranserê Ewrûpa hatine vekirin. Piştî 500 salan hunera bale tê Herêma Kurdistan.

Fêrgeha Baleya Silêmanî yekem fêrgeh li Kurdistan e, di roja 21.02.2009an de ji aliyê Wezîrê Perwerde ya Herêma Kurdistanê hat vekirin. Fêrgeh ji aliyê Mamoste Rûbar Ehmed tê rêvebirin. Ehmed diyar dike ku şagirtên wî ji 6 salan û bi jorve ne, û di 02.06.2009'an ve dest bi dewreya yekem kirin, ji bilî hinek şagirtên din ku di 21.02.2009'an hatibûn qebûlkirin.

Di vê dewreyê de, şagirt li ser 3 gruban hatin dabeşkirin. Grûba yekem 17 şagirt û temenê wan ji 6-8 salî bû. Grûba din C ye jimara şagirtên wê 16 û ji 21.02'an de dest bi fêrbûnê kirine û piştî vekirina dewreya fêrkariyê ya 02.06an ew şagirt derçûn û tevî Grûba C bûn.

Rêveberê Fêrgeha Baleya Silêmanî Rûbar Ehemd wiha dibêje: *"Piştî dewreya sê mehî, şagirt dikarin li gel xwendina xwe di fêrgehê de jî berdewam bikin û rojane dersên teorîk û pratîk yê baleyê bistînin. Piştî 12 salên xwendinê li fêrgehê, şagirt dibe xwediyê diploma hunerên baleyê û piştre jî azad e xwendina xwe di hunera bale de bidomîne yan jî bi bawernama xwe kar bike."*

## Dêra Ermeniyan dikin qursa Quranê!


(Wêne: Diha)

**Amed** - Li Navçeya Çunguşa Amedê di hewşa Dêra Ermeniyan ku 600 sal beriya niha hatiye avakirin de Qursa Quranê tê dayîn. Rayedarên Muzeya Arkeolojiyê ya Amedê diyarkirin ku wan li lîjneya parastinê gilî kiriye.

Li hewşa Dêra Ermeniyan a li navçeya Çunguşê înşaata avahiya Qursa Quranê destpêkir. Li ser vê yekê Rayedarên Muzeya Arkeolojiyê li dijî înşaatê derketin û li lîjneya parastinê gilî kirin û xwestin lêkolînê destpêbikin. Lê rayedarên lîjneya parastinê gotin "Em agahî nadin çapemeniyê." Rayedarên şîrketa înşaata taybet ku înşaata avahiya Qursa Quranê ava dikin diyar kirin ku wan destûr ji qeymeqamê navçeyê Çunguşê stendiye. Lê belê rayedarên qeymeqamiya navçeyê gotin ku agahiya wan bi înşaatê tune: "Me tu destûra fermî ne daye. Lê ger ku wek kes hatibin daxwazname îmze kiribin, em bi wê nizanin" xwe parastin. Îşnaata ku ev nêzî 2 mehan e didome li ser 3 qatan bilind bûye.

Dera Ermeniyan ku li nava navçeya Çunguşê ye li ser qada 500 metrekare hatiye ava kirin û 600 salî ye.

## Dengê defê ji dûrî ve jî ne xweş e!



**Hewlêr (Rûdaw)** – Karwan Necmedîn wek hemû niştecihên Hewlerê di meha remezanê de bi dengê daholên paşîvê hişyar dibe. Dû zarokên Karwan hene û gelekî ji dengê dahola paşîvan aciz e.

Di meha remezanê de berî paşîvê gelek kes wek pîşeyekî bo hişyarkirina xelkê li daholê didin û di dawiya mehê de ji peran ji xelkê werdigrin, bê wêya kesî ji wan xwestibe li daholê bidin.

Rêveberê Wezareta Ewqafê Hecî Selam Kerîm, dibêje di remezanê de lêdana daholê nerîteke Kurdewarî ye û bi hîç awayekî peywendiya wê bi ayîn ve tune û bi wî navî jî nakin. Herçend piraniya hevwelatiyan ji dahola paşîvan accis jî bin, kêfa gelek kesan jî ji dengê wê re tê. Fatîme Ezîz 45 salî ye û pir kêfa wê tê berê sibehan daholvan li ber dergehê wan li daholê bidin: "Ji min re bûye wek xuy." Hemwelatî

Rêveberê Polîsên Hewlêrê Komîser Ebdulxaliq Telet jî dibêje qedexeya daholvanan ne karê polîs e: "Ew dabûnerît û kevneşopî ye, peywendiya wê bi me ve tune."

# Duhok di kurmancî de bi israr e



**Ebdula Nihêlî**

**Duhok (Rûdaw)** – Li Kurdistanê nîqaşên li ser xwendina zarava kurmancî dom dikin. Li aliyê din Wezareta Perwerdeya Hikûmeta Kurdistanê heta niha bersiva daxwaza wîlayeta Duhokê ya di derbarê xwendina kurmancî de nedaye. Ji bo amadekariyên xwendina kurmancî li Duhokê lijneyekî hatiye damezirandin û dest bi wergera pirtûkên qonaxa paşnavendî hatiye kirin. Serokê Civata Parêzgeha Duhokê jî ragdigehîne ku 'Ji ber Silêmaniyê pirtûkên sîstema nû newergirtiye, mafê me heye bê destûra wezaretê bi zarava kurmancî bixwînin.'

Piştî serhildana 1991'an, li Herêma Kurdistanê xwendina bi zarava soranî destpêkir û di sala 1998'an de li devera Behdînan kurmancî û soranî bi hevre hat xwendin. Heta qonaxa şeşem ya bingehîn li devera Behdînan kurmancî dihat xwendin. Rayedarên parêzgeha Duhokê niha biryar standin ku îsal qonaxa heftê ya bingehîn jî bibe kurmancî.

Serokê Civata Parêzgeha Duhokê Dr. Fazil Umer diyar kir ku zêdeyî du mehan e Civata Duhokê ji bo xwendina qonaxa heftem li Devera Behdînan bi zaravê kurmancî nameyekî şandiye Wezareta Perwerdeyê: "Mixabin demekî pir nemaye ku xwendin dest pê bike. Lê wezaretê heta niha bersîva me nedaye. Lewra em neçar bûn me lêjneyekî ji Nivîskarên Yekîtiya Nivîserên Kurd, Tayê Duhokê û hin mamosta û şarezayên ziman pêk aniye û me dest bi wergera pirtûkan ji zaravê soranî bo zaravê kurmancî kiriye."

Serokê Civata Parêzgeha Duhokê, Dr. Umer siyaseta wezareta perwerdeyê rexne kir û bo Rûdawê wiha axifî: "Piştî ku me çendîn car pirsgirêkê şopand û lêkolîn kir, derket holê ku sedemê sereke zaravê soranî ye. Lewra me û bê rizamendiya wezaretê biryar daye em dest bi wergera pirtûkan kiriye û emê berdewam bin. Maddeya çaran ji yasaya Îraqê maf daye Kurdan bi zimanê xwe biwînin. Herwiha mafê gelê Duhokê ye bi zarava xwe bixwînin."

**Li Behdînanê kurmancî, li Silêmaniyê soranî**

Dr. Fazil Umer dibêje 'dû zaravên sereke yên kurdî rastiyekî dîrokî ye û kes nikare red û mandel bike' û helweesta hin kesên li devera Soranan ya li dijî zarav û hebûna kurmancî rexne dike: "Me di nameya xwe daxwaz kir ku devera Behdînan bi zaravê kurmancî bixwîne û waneyek jî bi soranî bê xwendin. Dîsa li deverên Hewlêr û Silêmaniyê jî dersek bi zaravê kurmancî hebe, herwiha lêjneyek li seranserî Kurdistanê were pêkanîn û zimanekî yekgirtî yê xwendinê ji bo Herêma Kurdistanê bê çêkirin."

Rêveberê Perwerdeya Tilkêfê, Rêsan Hesen jî ji Rûdawê re wiha got: "Piştî azadkirina Îraqê xwendin li herêma me bûye kurdî û zaravê behdînî, hemû mamoste û şagirdên me tenê kurmancî dizanin, ger qonaxa heftem jî bi kurmancî nexwînin, navçeya me wê rastî pirsgirêkên mezin û kûr bibe."

Serokê Yekîtiya Nivîserê Kurd Tayê Duhokê jî dibêje devera Behdînan dixwaze bi zarava kurmancî bixwîne: "Niha ew lijne hatiye pêkanîn, çendîn endamên yekîtiya me di nav de ne û emê ji bo alîkarî û wergerê bixebitin, da ku şagirtên me bi zimanê dayikê bixwînin."

# Kurd serokkomariyê jî ji dest didin?



**Hewler (Rûdaw)** - Lîsta Hevpeymana Kurdistanê di Parlamena Îraqê de xwedî 53 kursî ye û piştî Lîsta Hevbendiya Şiiyan lîsta dûyem e. Dema ku Lîsta Hevpeymana Kurdistanê ev 53 kursî bidest xist, ji bilî Yekgirtûya Îslamî ku 5 kursî bidest anî, li Kurdistanê lîstekî wiha tunebû ku digel wê reqabetê bike û vê yekê jî tu guhertinek di nav hevkêşeyên siyasî yên nav parlamenê pêk neanî.

Di hilbijartina vê carê de Lîsta Kurdistanê rûbirûyê reqabetekî dijwar bûye. Lîsta Goran ku di Parlamena Kurdistanê de xwedî 25 kursî ye, beşdarê hilbijartinên Îraqê jî dibe. Rayedarê Lîsta Goran Mihemed Tofîq Rehîm daxuyand ku ewê bi lîsteyekî cuda telî hilbijartinên Îraqê bibin. Berpirsên Goran bawer in, ku dengên wan di hilbijartinên Îraqê de ji rêjeya dengên hilbijartinên Kurdistanê gelek zêdetir bin. Endamê Serkirdayetiya YNK'ê û alîgirê Baskê Reformxwazan Cemal Mihemed bi bihêzbûna Lîsta Goran bawer e û li gor wî 'piraniya Kurdên derveyî welat û herêmên nakokbar, ligel Lîsteya Goran in.' Hejmara kursiyên Goran di Parlemana Îraqê her çiqas bin, ya Lîsta Hevpeymana Kurdistanê kêm dibin.

Di asta Îraqê de sê lîsteyên Erebî hene ku reqabetê ligel Kurdan bikin: Lîsta Hevbendiya Nîştimanî ya Îraqî, Partiya Dawa bi serkêşiya Nûrî Malikî û Lîsta Sunniyên Îraqê ku Salih Mutleg, Eyad Elawî, Mehmûd Meşhedanî, Cewad Polanî û Ehmed Ebdulxefure serokatiya wê dikin.

Berpirsê Navenda Lêkolînên Stratejîk ya YNK'ê Ferîd Esedserd dibêje, dibe ku Kurd vê carê nikaribin postê serokkomariyê werbigrin û sedemên vê yekê jî wiha anî ziman: "Li Îraqê hêza yekem hikûmetê pêk tîne. Ew hêz jî ji bo pêkanîna hikûmetê û bidestxistina dengê pêwîst di parlamenê de pêwîstî bi hevalbendiyê bi hêza dûyem re heye û piştre bi hêza sêyem re. Postê serokkomar jî ji lîsta dûyem re tê dayîn. Sedemên wê yekê hene ku Kurd di vê hilbijartinê de sêyem an jî çarem bin û lewra postê serokatiya parlamenê bo Kurdan bimîne."

Berdevkê Lîsta Hevpeymana Kurdistanê Firyad Rewandizî jî dibêje, ku eger Kurd li gor hinek hesabên hûr û pêşwext xwe ji bo vê hilbijartinê amade nekin û rewşa xwe di parlamena dahatû û pêkhateya hikûmeta pêşîn misoger nekin, ew yek wê zirarê bigihîne wan: "Wê demê pir zor e, ku li Bexdayê hebûna Kurdan bibandor be."

Li gor Seroka Fraksyona Lîsta Kurdistanî Sozan Şehab, ya herî baş ewe ku Kurd bi lîstekê hevbeş beşdarî hilbijartinên Îraqê bibin û reqabeta navbera xwe ji holê rakin. Berpirsê Dezgeha Hilbijartin ya PDK'ê Cefer Emînkî wiha dibêje: "Pêwîst e Kurd ji hilbijartinên berê yekgirtîtir bin. Ya baş ew e, ku vê carê Lîsta Yekgirtû jî were nav hevpeymanê û ji Lîsta Goran û aliyên din jî were xwestin ku bên nava vê hevalbendiyê."

# YNK reforman pêk tîne



**Hewlêr (Rûdaw)** – Yekîtiya Nîştimanî Kurdistanê (YNK) amadekariyên xwe nûhkirine dilezîne. Di plana reformên navxweyî de damezrandina parlamentoyeke hizbî jî hatiye rojevê. Di kongreya dûyem de, polîtburoyê biryar dabû ku ji bo YNK'ê saziyeke taybet wek parlamenê bê avakirin. Li gor vê projeya ku ji bo peyrewa navxwe ya YNK'ê hatiye amadekirin, nabe ku tu endamekî YNK posta hizbî werbigre.

Di bihara 2008'an de Polîtburoya YNK'ê lijneyekî ji bo danîna pêrew û bernameyeke nû ji bo YNK'ê pêk anî. Lijne ji Arif Ruşdî, Ferîd Esedserd, Aso Elî û Rizgar Elî pêk hatibû. Arif Ruşdî û Ferîd Esedserd projeya pêrewa navxwe ya YNK'ê ji bo kongreya sêyem amade kirin û radestî polîtburoyê kirin. Ferîd Esedserd di vê derbarê de ji bo Rûdawê wiha ragihand: "Peyrewa navxwe ya amadekirî li cem polîtburoyê ye û wan qebûl kiriye. Heta niha tu not û têdîtinek wan li ser wê nebûye."

Li gor wê projeyê ku pêşkêşî polîtburoya YNK'ê hatiye kirin, endamên polîtburoya YNK'ê ji bilî endametiya polîtburoyê nabe post û berpirsiyariyekî din yê hizbî werbigrin. Ferîd Esedserd, wiha da axifî: "Endamê/a polîtburoyê nabe bibe berpirsê/a buro, malbend û organên din yên hizbî. Ji bo wan postan dibe endamên serkirdayetî an kesên din werin danîn."

Ferîd Esedserd û Arif Ruşdî, di wê projeya ku ji bo peyrewa navxwe ya YNK'ê amade kirine û di vir de bahsa çêkirina parlamenê jî kirine. Esedserd, nerînên xwe wiha tîne ziman: "Me projeyê bidawî anî û pêşkêşî polîtburoyê kir. Di wê projeyê de bahsa parlamenê hatiye kirin û niha li ser damezrandina wê dijberî tune, dijberî li ser desthilata wê heye." Esedserd hebûna vê parlamenê pêwîst dibîne û wiha dibêje: "YNK endamê Enternasyonala Sosyalîst e û herwiha partiyeke sosyal demokrat e. Pêwîstî bi parlamenekî wiha heye. Ev parlamen wê xwediyê karê xwe yê taybet be." Li gor Esedserd, heta niha erkên vê parlamenê nehatine diyarkirin.

Di kongreya dûyem a YNK'ê de, Endamê Polîtburoya saziyê Dr. Fuad Masûm daxwaz kiribû ku saziyeke wek parlamenê ji bo YNKê bê çêkirin û navê wê deynin 'Civata Navendî.' Li ser vê yekê Navenda Lêkolînên Stratejîk yên YNKê jî bi projeyekê ew mijar anî rojevê.

# Şaneder bû galerî!



**Wirya Budaxî**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Ew cihê ku berê Taxa Mehete û rawesteha trenê lê bû, niha bûye yek ji parkên bajarê Hewlêrê û gelek xelk bo geryan û derbaskirina demê serdana wê dikin. Di nav wê parkê de jî galeriyekî bi dîzaynekî balkêş dikeve berçav. Evder cihê nîşandana tabloya hunermendan e. Galeriya Şaneder, bi şêweyekî bazneyî û bi alavên normal wek çîmentoya reş û spî û seramîk û kevir şibê şikeftê hatiye çêkirin, digel vekirina parkê di destpêka sala 2009'an de, ew galerî jî hat vekirin. Rêveberê Galeriya Şaneder, Havkar Riskin ku sala 2008'an Beşa Peykersazî li Kolêja Hunerên Bedew kuta kiriye, bo Rûdawê ragihand: "Ev galerî destpêkê bo xwaringehê hatibû çêkirin, lê piştre em ji bo galeriyê wergirt. "

Galerî rasterast ji aliyê parêzgar û cîgirê parêzgarê Hewlêrê hatiye piştgirîkirin, ciheke taybet e bo nîşandana berhemên hunermendan û rojê zêdeyî 16 seetan vekirî ye. Serdana galeriyê bê pere ye û hunermend jî dikarin karên xwe li wir pîşan bidin û bifroşin. Rêvebirê Galeriyê wiha diaxife: "Rojên înê 6 heta 8 hezar kes serdana galeriyê dikin. Mebesta me ew e xelkê hîn bikin ku tabloya Hunermendên Kurd bikirin, nek ew tabloyên bazarê yên ji Tirkiyê û Çînê tên. Di wê heyamê de zêdeyî 20 berhemên hunerî hatine firotin ku bihaya wan di navbera sed heta hezar Dolar bû."

# "Tirk bi cil û bergên xwe êrîşa kultûrî dikin"



**Wladimir van Wilgenburg**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Li Hewlêrê di navbera 17 û 20'ê tebaxa 2009'an de Pêşengeha Navdewletî ya Cil û Berg û Kincên Werzişî hat lidarxistin. Di pîşengehê de 60 şirketên Tirk beşdar bûn. Bazirganên Tirk ji hejmara zêde ya beşdaran matmayî man. Li aliyê din zêdebûna cil û bergên Tirkî di bazarên Kurdistanê de li ser kevneşopiya şêweyî Kurdî wek xeter tê nirxandin.

Rojnamevan Rêbwar Kerîm Welî li ser zêdebûna cil û bergên Tirkî di bazarên Kurdistanê de dibêje ku dagirkirina cil û bergên Tirkiyeyê ya bazara Kurdistanê 'êrîşekî kultûrî' ye. Li gor Welî jinên Kurd fêrî lixwekirina kincên kirt û tazî nebûne û ew adetê Kurdan nîne ku pereyekî zêde bide modeya cil û bergan.

Bazirganê Tirk Sami Samati jî, ku nûnertiya şirketa navdar Calvin Klein dike, wek Welî difikire û wiha nerînên xwe tîne ziman: "Mebesta vê pêşangehê zanîna asta bikarîner ya kirîna tiştan e. Niha ew ast gelek nizim û li jêr e. Lê dibe di pêşerojê de ev modeyên cil û bergan bibin pêwîstiyekî xelkê. Li vir pêşdeçûnek lezgîn çêdibe û mode jî tên firotin. Lewra em dixwazin xwediyê yekem yê vê bazarê bin."

Bazirganê Kurd Mihemed Altıntaş ku ji Stenbolê ye, bi heman awayî hest pê dike ku şêwaza fikirîna li Kurdistanê ji ya li Tirkiyê cuda ye: "Li vir xelk dixwazin kincekî bi 20 Dolar bikrin, ne bi 200 Dolarî. Ew balê nadin modeyê." Niyaz Çavuşoglu ji şirketa PUKO jî dibêje, ku wî çaverê nedikir ku pêşangehekî pîşegerî ya cil û bergan wiha hebe, lê di derbarê bazirganiya vir xemgîn û dilteng e: "Xelkê vir gelek dost û semîmî ne, lê bazirganî pir jar û sist e." Herwiha navbirî rexne ji tiştkirîna Kurdan digre: "Li vir gelek cil û bergên naylonî yên Çînî hene. Xelk parçeyê ku ji penbû tê çêkirin nas nakin. Li vir tenê giringî bi bihayê didin û cûrê kincên vir gelek erzan in. Lê ez bi xwe erdê odeya xwe jî bi van parçeyan paqij nakim."

Cumali Memiş ji şirketa 'Demirtaş Tekstek' bi heman awayî dibêje ku gelek tişt nefirotibû, lê hêvîdar e ku pêşdeçûnên li vir ber bi başî ve pêşve herin: "Kurd cîranê me ne. Bila em hêvîdar bin, ku ev pêşveçûnên wan berdewam bin."

# "DTP û AKP nikarin li hev bikin"



Hêmin Xoşnav

**Hewlêr (Rûdaw)** – Hewldan û guftûgoyên li ser pirsgirêka Kurd, bandoreki mezin li ser siyaseta hundirê Tirkiyeyê ji dike. Lê heman bandor li ser pêwendiyên AKP û DTP'ê nayê dîtin. Berewajî piştî proseya çareseriyê navbera AKP û DTP'ê de rikeberiyeki mezin rûdide.

Mamsoteyê Fakulteya Hiqûqê ya Zaningeha Dicleyê, Prof. Fuad Coşkun, dibêje 'encamên hilbijartinên sala 2005 û 2007'an li Rojhilat û Başûrê Rojhilatê AKP'ê serxoş kir. AKP li pey wan hilbijartinan wisa dizani ku dikare bi tenê pirsgirêka Kurd çareser bike, lewra ji Serokwezir Erdoğan li gel hemû wan zext û givaşan, bi DTP'ê re civiya."

Herçiqas herdû partî ji piştgiriya proseya çareserkirina pirsgirêka Kurd dikin ji, guhertinek wiha di helwesta wan ya beramberî hev pêk nehatiye û berpirsên herdu partiyan li dijî hevûdû helwstên xwe yên berê didominin. Piştî civîna Serokê DTP'ê Ahmet Türk û Serokwezîr Erdoğan, Hevseroka DTP'ê, Emine Ayna li Agirî di civîneke bi gel re ragihand ku, ew baweriyê bi AKP'ê nakin.

Parlamentera DTP'ê ya bajarê Iğdirê Pervin Buldan, ji Rûdawê re nerastbêjiya AKP'ê tekez dike: "Em ji dîrokê fêrbûne ku di derbarê pirsgirêka Kurd de, nabe em saf û sade bin. Herçiqas iro behsa vekirinekê dikin, lê di warê piratîk de tu tiştek nehatiye guhertin. Hin operasyon bi hemû germ û gurî ya xwe dom dikin. Ev yek tenê bes e ji bo ku em bizanibin AKP ji bo çareserkirina wê pirsê ne ciddî ye."

Parlamenterê AKP'ê yê Bajarê Bedlîsê, Vahit Kiler, di çareserkirina pirsgirêka Kurd ciddibûna AKP'ê tekez dike: "AKP pirsgirêka Kurd ji bo meramên siyasî bikar neaniye. Çareserkirina pirsgirêka Kurd yek ji armancên sereki yên AKP'ê ye. Heta ew pirsgirêk bigije çareseriyê, emê prosesa vekirinê bidominin. Ger DTP dixwaze pirsgirêka Kurd were çareserkirin, pêwist e bêje û zimanê xwe biguherîne."

Prof. Fuad Coşkun, di vê derbarê de dibêje ku DTP û AKP nikarin li hev bikin: "Herdû parti li herêmê bi tenê rikeberiya hev dikin, lewra ji bo ku rêjeya dengderên xwe ji dest nedin, neçar in digel hev rikeberiyê bikin."

# Tirkiye pêşeroja xwe di şer de xerc dike

**Stenbol (Diha)** - Gelên li Tirkiyeyê ji ber maliyeta şerê 30 salî di nava betalî û xizaniyek mezin de dijîn. Dewletê dikarî bi pereyê ji şer re hatiye xerckirin ji bo 4 milyon kesên betal kar peyda bike. Herwiha hatiniya neteweyî ya Tirkiyeyê ji li gorî iro bilindtir bibûya.



Di pêvajo çareseriya pirsgirêka Kurd tê niqaşkirin de, çavkaniyên aboriyên yên li şer hatine qerçkirin, tên rojevê. Di şerê 30 salî de bi giştî perêyên dewletê li şer xerçkiriye, ji bo gelên welateki ku nifûsa wan ji sedî 15 di bin sinorê birçîbûnê de ne û ji sedî 52 ji di sinorê xizatiniyê de ye, weki windahiyek mezin tê nirxandin. Li gor hind derdoran 400 milyar dolar, li gor hind derdoran 600 Milyar Dolar û li gor Berdevkê Hikûmetê Cemil Çiçek ji bi hemû aliyan ve dema tê nirxandin 4 trilyon Dolar hatiye xerckirin. Li gor pisporan ku ev çavkanî ne ji bo şer nehatina bikar anin niha 4 milyon kesên betal dikarin bibin xwedî kar û hatiniya Tirkiyeyê ya netewi ji bilintir bibûya.

**'Bi pereyê tirk 600 katrilyon'**

Serokê Giştî yê KESK'ê Sami Evren, li gor daxuyaniya ku da hejmara pereyê li şer hatiye dayin weki 400 milyar Dolar aşkera kir. Evren axaftina xwe wiha domand: "400 milyor Dolar iro li gor pereyê Tirk dike 600 katrilyon. Bi vî pereyî pirsgirêka Tirkiyeyê ya betaliyê bê çareser kirin. Ji nifûsa Tirkiyeyê ya ji sedî 68 di bin sinorê xizaniyê de ye, dê li gorî niha di rewşektir aramtir de bijiya. Dewletê dikarî milyonek dibistanên ji 16 sinifan pêk tê çêbikira. Dewletê dikarî her mehê 500 lirayî bide her xwendekarekê. Maliyeta şerê hatiye meşandin tenê pere ji nîne. Ji ber xizaniyê û tunebûna gelek pirsgirêkên psikolojîk, civakî û çandî ji derdikevin holê û ev yek civakê têk dibe."

**Li herêmê betalî nedima**

Li gorî daneyên musteşariya xezîneyê, li Tirkiyeyê ji bo kesek bibe xwedî kar hewceyî bi 288 hezar 515 TL'yî heye. Lê ev maliyet li gor herêman diguhere. Li Kurdistanê ji bo kesek bibe xwedî kar hewceyi bi 115 hezar 127 TL'yî razemeniyê heye. Li gor tevahiya Tirkiyeyê ji, maliyeta istihdama keseki li herêmê ji nîve nîv dikeve. Niha li Tirkiyeyê li gorî istatistikên dewletê 3 milyon û 618 hezar kes betal in. Li gorî van daneyan bi pereyê ji şer re hatiye xerckirin 2 milyon 79 hezar, 614 kes dikarî bibe xwedî kar. Ku pere li herêmê bihata xerckirin 3 milyon 867 hezar 798 kes dê bibûna xwedî kar. Bi vê yekê re betaliya li herêmê derketiye ji sedî 60'an dê bi dawî bibûya. Herwiha ji sedî 67'ê Tirkiyeyê dikarî jiyanek bi aramtir bidomanda.

**Serokê Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê Sami Tan:**

# Azadî tenê ji bo Kurdên dewletê heye



**Stenbol (Rûdaw)** – Li gel ku pirsa zimanê Kurdî li Bakurê Kurdistanê bûye cihê niqaşan, Serokê Enstîtûya Kurd li Stanbolê, dibêje pirsgirêk û astengên dewletê li hemberî qedexekirina zimanê Kurdî tê bikaranin: "Wê rewşê wiha kiriye ku nifşa nû pêngav bi pêngav ji zimanê Kurdî dûr dikeve, ger astengên dewletê kêm bibin bandora erênî bi cih dihêle, lê ev para azadiya ziman nake, pêwist e bi irade û têkoşîna gel ziman azadiyê bidestve bîne."

Sami Tan, di hevpeyvînekê de bo Rûdawê ragihand, li gel damezrandina TRT 6'ê, girtin û binçavkirina siyasetvan, niviskar û rewşenbîrên Kurd di dema axaftin û nivisina bi zimanê Kurdî dom dike û wiha diaxife: "Nerînek derketiye holê ku azadiya zimanê Kurdî tenê di çarçova TRT 6'ê de ye, di nav sinorê TRT 6'ê de Kurdî serbest e. Lê demeke mirov di nav televizyonê de tê derve û diçe nav civakê, ew qedexekarî her berdewam e."

Tan dibêje ku "TRT 6 hewldide Kurdayetiya herêmî çê bike, ji ber ku xwedî nasnameyeki netewî nebe, wek pêkhateyeki lokalî ku perçeyeke ji Tirkiyê be, bi Zimanê Kurdî diaxive û weki din ji aliyê Îslamî yê xwe dixe berçav.

Liv û lebatekî bi vî curî tê wêwateyê ku azadî tenê bo Kurdên ser bi dewletê ye." Li beramberî bikaranîna peyva Kurdistan, Tan wiha nerînên xwe tîne ziman: "Heta niha dewletê bi awayekî fermî navê 'Kurdistanê nepejirandiye, navê gund û bajaran wek di Tirkî de hatiye, bikar tîne,

Zanyariyên Enstîtûya Kurdî li Stanbolê eşkere dikin, li Bakurê Kurdistanê li gor egera herêma coxrafî ji sedî 70 heta ji sedî 80 a hemwelatiyên Kurd bi Kurdî diaxifin: "Lê li bajarên Tirkiyê rewş cuda û dijwartir e. Li Stanbolê Kurd bi Kurdî diaxifin, ev jî bûye modeleki erênî, ger mirov binirxîne, hin caran axaftina bi Kurdî li Stanbolê ji Amedê zêdetir e,": "Ev balkêş e, dema mirov li ser Kurdî tekez dike, hêrs û nerehet dibin, lê li Stanbolê, demekê mirov diçe xwaringeheki an kafteryayekê û bi Kurdî diaxife, yekser kedkareki Kurd tê cem te, dilxweşî û kêfa xwe diyar dike û heta pê çêbibe xizmeta te dike."

Serokê Enstîtûya Kurdî ew yek ji ragihand ku dixwazin raporekê li ser rewşa ziman li Bakurê Kurdistan û Tirkiyê amade bikin û radestî Yekitiya Ewrûpayê (YE) bikin, lê heta niha ew proje nehatiye cibicikirin, Sami Tan dibêje, YE derbarê zimanê Kurdî gelek hişkî helwêstê wernagire û ji wî alî ve zêde li gor berjewendiyên xwe difikire.

Sami Tan dibeje ku bona em bikarin digel Başûr bi hevre hin xebatan birêve bibin, li gel hemû hewlan, pêwendiyeki sistematik çê nebûye. Demeki me xwest hinek şagirdan bişînin Başûr. Lê mixabin rayedarên kori zanyarî gotin ew kar ne di desthilata me de ye, bi Kek Nêçirvan re çareser bikin.

# Yekem kongreya bijîşkên Kurd li Amedê

**Amed (Diha)** - Di navbera 22-24'ê cotmehê de li Amedê yekem kongreya tibî bi kurdî tê lidarxistin. Serokê Odeya Tabiban a Amedê Selçuk Mızraklı diyar kir ku yekem car e kongreyeke tibî bi kurdî tê kirin û got armanca wan pêşxistina di warê tibî de literatûra kurdî ye. Mızraklı herwiha daxuyand ku ji Sûriye, Îraq, Tirkiye û derveyî welat gelek bijîşkên Kurd wê beşdarî kongreyê bibin.

Li hemberî zordarî, asimilasyon û pişavtinê ji zimanê kurdî di her warî de pêşketina xwe didomîne. Piştî wêje, matematik, civaknasî û gelek qadên din kurdî di warê tibî de jî gava yekem davêje. Di dîroka Kurdan de yekem car kongreyeke tibî bi kurdî tê lidarxistin. Bi pêşengiya Odeya Bijîşkan a Amedê di navbera 22-24'ê cotmehê de 1. Rojên Tibî ya Mezopotamyayê li Amedê pêk tê. Serokatiya rûmetê ya kongreyê Parlementerê TIP'ê yê berê Dr. Tarık Zıya Ekinci û serokatiya wê Dr. Selim Ölçer dike.

**Nexweşiyên li Kurdistanê tê niqaşkirin**

Di kongreya ku 300 bijîşk wê



(Wêne: Diha)

beşdar bibin de axaftin wê bi simultan wê li tirkî û ingilizî ji bên wergerandin. Di kongreyê de mijarên wek, "Pergalên tendurîstiyê yên Rojhilata Navîn", "Xirabiyên kerbê yên travmatîk", "Nexweşiyên li Mezopotamyayê" û "Teşisa pêşdem û tedawiya pençeşêrê" wê bên niqaşkirin. Çav li rê ye di kongrê de terminolojiya kurdî ya di qada tibî de bê avakirin. Herwiha politika û pêkanîn li hemberî 4 dewletên Kurd lê dijîn tê bên niqaşkirin.

**'Emê zimanê kurdî di tibê de dewlemend bikin'**

Serokê Odeya Bijîşkan a Amedê Selçuk Mızraklı derbarê kongreyê de agahî dan û balkişand ser giringiya kongreyê. Mızraklı diyar kir ku navê, "Rojên Tibî ya Mezopotamyayê" li kongreyê kirine û wiha axivî: "Me par di meha cotmehê de dest bi xebatên xwe kir. Ev amadekarî bi serdana me ya Kurdistana Federal zêdetir bûn. Em bi pişekarên xwe yên li Ewrûpayê yên Kurd re jî axivin û me biryar da ku em kongreyê li dilê Kurdan Amedê pêk binin. Kêmasiyeke Kurdan e ku di warê tibê de hilberîn nekirine û belge li dû xwe nehiştine. Lê ev encama politikaya tune hesibandinê ye. Di hemû qadên jiyanê de Kurd tune hatine hesibandin. Di qada tibî de jî Kurd tune hatine hesibandin. Ev yek bûye sedema paşve mayina kurdî. Qasî ji destê me bê em dê li ser vê yekê hûr bibin û van pirsgirêkan ji holê rakin. Emê hem zimanê kurdî di tibê de dewlemend û hevpar bikin û hem ji nexweşiyên li Kurdistanê hevpar bikin. Ji bo van em dê riyên çareseriyê niqaş bikin."

**Parçebûn:**

# Qedera partiyên Rojhilatê Kurdistanê

**Sabir Qadiri**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Hizba Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) wek kevintirîn hêza siyasî li Rojhilatê Kurdistanê ji dema damezirandinê, rûberûyê perçebûnê bûye û ev yek heta niha wek qedera vê partiyê berdewam kiriye. Nakokiya pêşîn di nav refên PDKÎ di navbera yek ji damezrênerên (Komeley Jiyanewey Kurd) Evdilrehman Zebêhî û Serokkomarê Kurdistanê Qazî Mihemed derket holê. Ji wê demê virde pirsgirêka cudabûn û hevgirtina hizbên Rojhilatê Kurdistanê bûye yek ji bingehên çanda tevgera siyasî ya Rojhilatê Kurdistanê ta radeya ku di çar kongreyan de (2-4-8-13), parçebûn çêbûne.

Endamê Komiteya Navendî ya Hizba Demokrata Kurdistanê û berpirsê politburoya wê li Hewlêrê Umer Balekî di derbarê diroka cûdabûnan di nav hizbê de amaje dike ku êgoizm, xweperestî û hizr û baweriyên cuda û krîza rêvebirina hizbê faktorên sereke yên nakokî û parçebûna ye.

Navbirî pêdagirî li ser pêwistiya yekkirina herdû baskên PDKÎ kir û wiha axaftina xwe domand: "Rêberên PDKÎ divê bi wêrekî berê xwe bidin pirsa parçebûnê, di rewşeke wiha de ku dikarin xizmeta jihevnêzikkirina herdû baskan bikin û wan bikin yek."

Li gor Balekî, yekitiya bi plan û şirovekirin pêwistiyeke ku berjewendiya xelkê Rojhilatê Kurdistanê diparêze, herwiha behskirin û gotûbêjkirina pirsa yekitiyê li ser rûpelên rojnameyan bê fêde ye: "Divê herdû bask bigihijin baweriyekê ku divê hevdu qebûl bikin û li ser aliyên hevbeş lihevbikin."


(Wêne: Hamed Masuomi)

Rojnamevan û çalakvanê siyasî yê Rojhilatê Kurdistanê Behzad Xoşhalî derbarê sedemên parçebûn û piştre yekbûna hizbên Rojhilatê Kurdistanê ragehand: "Rola faktorên dîrokî, psîkolojîk û zanistî-asta zanîn û xwendinê- di parçebûn û yekgirtina hizbên Kurdî li her çar parçeyên Kurdistanê de heye, nemaze faktora zaninê hiştiye ku berevajî rewşa siyasî di tevahiya civakan de, li Rojhilatê Kurdistanê ji dêlva hizban, xelk bibin pêşengên civakê, ev yek dihêle xelk ji hizban dûr bikevin û li alterantîvên din bigerin."

Herçiqasî berpirsekî PDKÎ (Baskê Mistefa Hicrî) bersivên pirsên Rûdawê nedan jî, lê li gor jêdereki nêzîk û agahdar ji PDKÎ (Baskê Mistefa Hicrî), PDKÎ (Baskê Evdilla Hesen Zade) di belgeyên kongreya 14'an de hatiye ragehandin ku her cûre peywendî, hevkarî û xebata hevbeş li gel baskên PDKÎ yê din (ku wan wek grûb û taxim û cemaet binav dikin) bi guherandina navê wê baskê ve girêdayî ye û domdike: "Vêna bi xwe pirsgirêk dijwartir kir û îmkana yekkirina herdû baskan rastî astengên ciddî kir."

Belgenameyên kongreya 14'an ya PDKÎ (Baskê Evdilla Hesen Zade) behsa pêwistiya hevkarî û jihevnêzikbûna hêzên siyasî yên Kurd dikin. Derbarê hevkarî û nêzikbûna ji hêzên siyasî yên Kurd bi taybet PDKÎ Balekî wiha diaxife: "Li gel ku em di tevahiya name û daxwuyaniyên xwe de daxwaza jihevnêzikbûn û pêwistiya hevkariyê dikin jî, lê mixabin wek pêwist bangewaziyên me nayên bersivandin. Bi baweriya min sedem vedigere ku hizb û rêxistinên Kurdên Rojhilatê Kurdistanê hevdû qebûl nakin, hemî civînên bo karê hevbeş di navbera hêzên Kurdî de nagihin encamên çaverêkirî."

Yek ji encamên cudabûn û parçebûnên hizbên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê, dilgiranî û xemsariya xelkên Rojhilatê Kurdistanê di encama parçebûnên li pey hev û dabeşbûna xelkê li ser aliyên nakokibar, herwiha dirêjkişandina vê rewşê hizra peydekirina alternativekê din li ba xelkê Rojhilatê Kurdistanê, bihêztir dike.

# Rojhilatê Kurdistanê ji xizaniyê dinale



**Sabir Qadiri**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Demekî ku rojane nûçeyên kuştin û birindarbûna bazirganên ser sînorê Rojhilatê Kurdistanê belavdibin, Husên Mam Ehmedî ku yek ji kasibên ser sînor bûye û piştî ku pêl mayîneki kiriye, desteki xwe daye, wiha diaxife: "Ger li herêmê navendekî berhemanînê hebûya, qedera min û malbata min û dehan kesên dinên wek min wiha nedibû," jî aliyê din jî şareza û aborînasên Rojhilatê Kurdistanê dibêjin, koçkirina hêza kar ji bo bajarên wek Tahran û Esfehanê, karê reş û têlekdarî (kolberî) û karê dijwar ên bi vî awayî û kuştin dehan kasibkarên ser sînoran û xizanî û belengaziya zêde, encama paşketina aborî ya wan herêman e.

Li gel ku bajarên Rojhilatê Kurdistanê gelek bi kêr û bereket in û sedan maden û samanên xwezayî ên cûrbecûr hene, lê siyaseta aborî ya dewletê û rewşa xerab a aboriya Rojhilatê Kurdistanê wiha kiriye ku beşekî berçav ji Kurdan di bin pêla xizanî û belengaziyê de bijîn. Di encam de gelek kes li ser sînoran ji neçarî ji bo debara jiyana xwe karê reş û dijwar û qaçaxî dikin.

Li gor serjimêriyên fermî, rêjeya hêla hejarî û xizaniyê li Îranê digihije ji sedî 18. Lê ev rêje li parêgehên Kurdistanê yên wek Urmiye ji sedî 23, Parêzgeha Sine (Kurdistan) ji sedî 27, Kirmaşan sedî 28 û Îlam ji sedî 29 e. Rayedarên Komara Îslamî ji dibêjin hebûna dijminên Komara Îslamî û nebûna asayîş û tenahiyê li wê deverê û amadenebûna Kurdan bo berhemanînê, wek sedemên paşketina aborî û nebûna bingehên îiilberînê yekê nîşandidin. Ji aliyê din ve aborînasên Kurd, dabeşnekirina hevsengiya dahata giştî ya Îranê û raman û lênerîna ewlekariya karbidestên Komara Îslamî bo wan deveran û operasyonên leşkerî wek sedemên sereke yên paşketina aboriya wan nawçeyan dizanin û dibêjin, van sedeman wisa kiriye ku bi awayeke pêwist giringî bi rewşa aboiya wan herêman neyê dayin.

Nûnerê Piranşar û Serdeşê li Meclisa Şeşem, Hasil Dase, di derbarê rewşa aborî li Parêzgehên Kurdan dibêje ku di herêmên Kurdnişîn de tenê karê avahiçêkirin û xizmetguzaryê hatine kirin û Kurdistan ji jêrxanên aborî bêpar e: "Hiç navendeke hilberînê li deverê nîne. Sedem ji vedigere bo nerîn û ramana ewleyî û temaşekirina bi Kurd û herêmên Kurdan ji aliyê rejîma Îslamî ve."

Li gor statistîkên fermî ji sedî 20'ê xelkê Îranê yanê 12 milyon kes di bin hêza xizanî û belengaziyê de dijîn. Lê ew rêje li herêmên Kurdan de ji sedî 25ê zêdetir e.

Mamosteyê Zanîngehê û aborînas, Hesen Îlahî ji Rûdawê re rewşê wiha dinirxîne: "Parvekirina ne adîlane ya samana giştî û nebûna navendên stratejîk bo lêkolîn û hilberînê li herêmê wisa kiriye ku Kurdistan bibe yek ji parêzgehên herî paşkeftî ên Îranê. Sedemên vê yekê ji siyasî, dîrokî û kultûrî ne."

Hasil Dase dibêje faktora şerê çekdarî ya li bajarên Kurdistanê tenê pasaw û hêceteke bo paşdehiştina navçeyên Kurdan: "Di encama siyaseta rejîmê li herêmên Kurdakincî de şer derket holê. Ger hikûmeta navendî ew pere û îmkanatên ku ji bo şer terxan kir, bo avedankirin û berhemanînê xerc bikira, me ew rewşa xerab rû nedîda."

Di rastî de rêjeya kesên ku di bin hêla xizanî û belengaziyê de dijîn, gelek hijmarên fermî yên dewletê zêdetir e. Hesen Îlahî, di vê derbarê de ji wiha dibêje: "Li Îranê nêzîkî 6 milyon kes di bin çavdêriya komîteya 'Îmdad / Hevkariyê' de ye û 1 milyon kesên din jî di bin çavdêriya rêxistina 'Behzistî' de ne ku dû rêxistinên xêrxwaz in ku her yek ji wan di mehekê de tenê 30 hezar tumen pere werdigirin." Li gor çavkaniyên fermî, li parêzgeha Urmiye 350 hezar, li Sine 270 hezar, li Kirmaşan 320 hezar û li Îlamê jî nêzîkê 70 hezar kes di binçavdêriyê de ne.


Mehmet Aktaş

## Ji nûh ve keşifkirina Yılmaz Güney!

Beriya Yılmaz Güney biçe ser dîlovaniya xwe, xewneke wî ya mezin hebû. Wî dixwest bi alîkariya Dr. Qasimlo bi kaçaxî biçe Rojhilatê Kurdistanê û li ser "zayîna netewa Kurd" fîlmekî çêbike. Bi ve projeyê ve derhênerê mezin dixwest navê Kurd û Kurdistanê bi hemû dinyayê bide nasandin. Beriya ew, vê xwevna xwe bike rastiyekî, çû ser dîlovaniya xwe. Helbet fîlmen Güney yen wek 'Rê / Yol' û 'Kerî / Sürü' li hemu dinyaya ji aliye milyonan ve hatin temaşekirin.

Ji Afrîkaya reş, heta Amerîkaya Latîn hemu dinyaye cara yekem li ser perda spî, pirsgirêka Kurd bi riya wan fîlman naskir. Heta îro tu partî û rêxistinên Kurdan nikaribûn xizmetek wiha ji bo doza Kurd pekbînin. Îro li cihanê sînema Kurd, ji hemû hunerên din yên Kurdan bêhtir tê naskirin. Sînemevanên Kurd, li hemû festîvalên mezin yên dinyayê amade dibin. Çapemeniya cihanê her roj ji xwe re derhênerek an jî fîlmek kurdî dike mijar.

Mixabin nivîsar û stranbêjên Kurd hê jî wek "kur û keçên nav malê" mane. Di pêşketina sînemaya Kurd de bêgûman Yılmaz Güney, xwedî keda herî mezin e. Mirov bi rihetî dikare bêje, hemû sînemavanên Kurd, yên piştî Güney derketine meydanê bi awayekî, di bin tesîra wî de mane. Gelek derhenerên Kurd yekem car fîlme Güney temaşe kirine û biryar dane bibin fîlmçêker. Sînemaya Yılmaz Güney pir nêzî neo-realîzma Îtalî bû. Wî bindestiya Kurdan, welatên wan bi awayekî gelek realîst bi zimanê helbestê nîşanê temaşevanên xwe da.

Piraniya derhênerên Kurd; mijarên ku Yılmaz Güney di salên 70-80'an de anîbû ser perda spî, di fîlmên xwe de îro dubare dikin. Sînor, zordestiya leşkerên dagirkeran li ser gundiyên Kurd, bindestiya jinê, bazirganiya kaçaxî, zehmetiyên coxrafyaya Kurdistanê îro hê jî mijarên sereke yên fîlmên kurdî ne... Bê gûman berhema Güney, ya herî mezin, jiyana wî bi xwe bû. Wî emrekî li derveyî rêzê derbaskir. Heta roja mirina xwe ew di nav têkoşînê de bu. Güney piştî derketina Ewrûpa, helwesta xwe ya netewî ji hemû dinyayê re eşkere kiribû. Bi awayekî din, wî nexşeya riya hunermendiya xwe ji nû de destnîşankiribû... Armanca wî projeyên mezin yên netewî bûn...Lê felekê xayîn alîkariya wî nekir...

Hevalên wî yên wek Costa Gavrasê 70 salî hê jî fîlman çêdikin. Lê Güney di bihara hunermendiya xwe de xwe teslîmê axê kir. Ez bawerim, zûketina Xalît Begê Cibran, çiqas zirar dabe serhildana Şêx Seîd, zûçûyîna Yılmaz Güney jî ewqas zirar da doza Kurd. 9'ê îlonê 25. salvegera mirina wî hunermendê mezin e... Ez bawer nakim ku yek sazî û rêxistineki Kurdan çalakiyeki taybet ji bo wî li dar bixe. Ji ber ku ew ne endam û mîlîtanê partiyeki Kurd bû. Di heman demê de, em fêr nebûne, li witrîna xwe ya netewî xwedî derkevin.

Di rewşa îro de pewistiya me, ji nû ve keşifkirina navên wek Yılmaz Güney heye. Ji ber ku, kêmasiyek Kurdan a herî mezin jî "kêmbûna sembolên giştî yên netewî" ye. Mirov dibîne her perçeyekî Kurdistanê , jî xwe re "lehengên lokal" afirandine. Di destê me de, kêm nav û fîgurên netewî, ku di her çar perçeyan de xwedî rûmet in, hene. Di warê siyasî de em nikarin li ser sembolên giştî li hevdû bikin; qet nebe di warê rewşenbîrî û hunerî de em dikarin gotinên xwe bikin yek.

Belê... Ji bo mejûyekî kollektîf û netewî îro bêhtir, pêwistiya me xwedî derketina şexsiyetên dîrokî yên wek Yılmaz Güney heye. Hêvîdarim ew niha di bihûştê de fîlmên kurdî yên evîndariyê çêdike...

aktasmem@hotmail.com

**Li Sûriyeyê îşkence û girtin didomin**

# Rojîn rakirin nexweşxanê

**Şam (Rûdaw)** - Çalakvana Kurd û endama hevgirtina "Sitêr" ya bi ser Partiya Yekitiya Demokratîk (PYD) Rojîn Remo ji girtigehê rakirine nexweşxana Helebê. Rayedarên nexweşxanê, di derbarê rewşa girtiya Kurd de agahî nedan malbatê. Malbata Rojîn guman dike ku keça wan ji ber işkenceya zindanê ketibe haleki xerab.


Rojîn Remo

Rojîn Remo, di 29ê tîrmeha borî de, ji ali istixbarata siyasî ve li bajarê Menbicê yê nêzîkî Helebê hatibû girtin.

Rêxistina Mafê Mirovan (MAF), di daxuyaniya 22. 08. 2009'an de, girtina Rojîn Remo û destûr nedana hevdîtina bi malbatê re protestokir û doza serbestberdana wê û ya girtiyên siyasî, kir. MAF, balê kişand ser girtinên dawîn yên bajarê Amûdê. Di destpêka Tebaxê de Fewaz Hedad, Silêman Mamo û Mihemed Seîdê Çolî ji aliyê istixbarata leşkerî ve li Amûdê hatibûn girtin.

Dezgeha Ragihandina Rojavayê Kurdistanê di daxuyaniya xwe ya hefta borî de bal kişand ser çalakvanên jin yên ku bi destên hêzên istixbaratên rêjîma Sûriyê têne revandin û windakirin. Wek tê zanîn çalakvanên jin yên Kurd Feleknaz Xelîl û Efra Mihemed, di 3'yê tebaxê de ji ali istixbarata siyasî ve hatinbûn girtin û heta niha qedera wan nediyare. Li Sûriyê istixbarata siyasî ji ber yasayên awarte bê sînor tevdigere û di zindanan de bi işkencêyê girtiyan dikuje. Endamê PYD'ê Ehmed Hisên di hezîrana 2005'an de, di encama işkencê de jiyana xwe jidestdabû. Herwisa Naziya Ehmed Keçel ji ku ew ji endama PYD'ê bû, ji 2004 an de hatibû girtin û heta niha wendaye.

Herwiha ji serekên Kurdên Rojava Şêx Maşûqê Xeznewî û Osman Silêman piştî ku ji aliyê hêzên rejîmê ve hatibûn girtin, di zindanê de bi awayeke hovane hatibûn kuştin.




# Lobiya întegrasyona Kurdên Ewrûpa

Nasredin Akyol

**Wuppertal (Rûdaw)** - Yek ji saziyên Kurdan li derveyî welat ku ev demekî dirêj e xebata xwe dimeşîne Komkar e. Navenda vê saziyê niha li bajarê Almanya Wuppertal ê ye. Komkar xwe weki saziyeki bêalî, demokrat, dûr ji şiddete û tolerant dide naskirin. Komkarê li Almanyayê jiyaneki aştiyane û wekhev ligel Almanan û civakên din yên biyani ku li Almanya dijîn, integrasyona Kurdan û bihevrejîna li ser bingeha mafê mirovan ji xwe re kiriye hedef.

Komkar ji wekî gelek saziyên din yên Kurdan li derveyî welat di encama koçkirina gelek Kurdan ji Bakurê Kurdistanê hat avakirin. Karkeren Kurd ku piştî şerê dûyem ê cihanê ji Tirkiyê hatin Almanyayê, di 1973'an de dest pê kirin ku xwe bi rêxistin bikin. Şeş salan şûn de, di sala 1979'an de heşt komelên karkerên Kurd li bajarê Frankfurt ê bi navê Federasyona Komelên Karkerên Kurdistanê 'Föderation der Arbeitervereine aus Kurdistan' bi kurtî Komkar ava kirin. Piştî salên 60'î û 70'yî gelek kesên xwendekar, hunermend, siyasetmedar û yên ku ji ber zilma Tirkiyê reviyan ji hatin Almanyayê û Komkarê ji biryar da ku bi guhertina rewşa Kurdan û ya rêxistinên wan li Almanyayê ew ji xwe ji nû ve organize bike û navê xwe ji biguherinin û navê 'Verband der Vereine aus Kurdistan' Heta niha derdora 35 komele, komite û insyatîf ji hemû welatên Ewrûpayê di bin banê Komkarê de gihiştine hev û heryekî ji wan ji xwedan 30 heta 300 endam e. Komkar hejmara mirovên derdora xwe 40 heta 50 hezarî didê xuyakirin.



Komkar hem li navenda xwe û hem ji li komelên girêdayê xwe li gor derfetên heyî kursên zimanê almanî, kursên întegrasyona jinan, xebata ciwanan, seminer û civîn, rojên çanda Kurdî, temsîlkirina Kurdan di şahiyên Alman û biyaniyan de, perwerdekirina li ser mijarên civakî û gelek çalakiyên din li dar dixe.

Wekî din Komkar çendin pirtûk li ser Kurdan, hem bi kurdî û hem ji bi almanî, weşandin e û kovareki bi kurdî-tirkî bi navê Komkar-Bülten û yek e bi almanî ji bi navê Informationsbulletin Kurdistan derdixe. Ligel van xebatên weşanê Komkar xwedî pirtûxaneyeki berfireh li ser hemû aliyên jiyana kurdî ye.

Yek ji daxwazên bingehîn yê Komkarê naskirina Kurdan wekî geleki serbixwe ye. Komkar dide xuyakirin ku encameki giran ê nasnekirina Kurdan wekî gel ewe, ku ew ji gelek mafên ku civakên din ên biyanî sûde jê digrin, bêparin: xwendina bi zimanê zikmakî, weşana bi kurdî di televizyon û radyoyên Almanî de û alîkariya saziyên fermî bi zimanê zikmakî. Ji ber vê yekê Komkar karê lobiya kurdî, agahdarkirina saziyên ragihandinê yên Almanî li ser rewşa Kurdistanê karêkî xwe yê bingehîn dibîne.

## Weşangeriya Kurdên Almanya

# ”Kurd romanên Mehmet Uzun yên bi tirkî dixwazin“

**Berlin (Rûdaw)** - Zeynel Abidin Han nêzîkî 15 sal in li Almanya dijî û karê weşangeriyê dike. Ji bili xebatên di saziyên çandî de Zeynel Abidin ji sala 2003'an virve karê weşangeriyê dike û bi navên Weşanxana Evra û niha ji Weşanxana Han dû weşanxane vekiriye û bi dehan pirtûkên kurdî çap kiriye. Zeynel Abidin Han di serpêhatiya weşangeriyê de di derbarê taybetiyên xwendina Kurdên Ewrûpayê de ji bûye xwedî ezmûneki berfireh. Wî di derbarê pirsgirêk û ezmûnên weşana kurdî li Ewrûpayê pirsên Rûdawê bersivandin.



***Tu dikarî ji kerema xwe re ji me re hinekî behsa Weşanxaneya Han bikî?***

Weşanxaneya Han di sala 2007'an de li Berlin ê dest bi weşanê kir. Lê berî wê ji di sala 2003'an de me Weşanxaneya Evra dîsa li Berlin ê avakiribû û heta sala 2007'an nêzîkî sed pirtûkên kurdî hate weşandin. Di nav çar salan de gelek berhemên kurdî hatin weşandin. Bo nimûne, bi kurdî ev romanên bi navê Memê Zirav, Simyager, Girava Stêrkên Vemirî, Binefşên Tariyê, Rexê din yê Xabûrî, Viyan, Barova Befrê, Bîgrî Heval hatibûn weşandin. Dîsa ji beşa felsefê Xweparêziya Sokrates (Platon), beşa mitolijiyê de Bircên Bêdengiyê ya Faysal Dağlı, ji beşa helbestê dîwanên wek Min ji bêriya te paywend kevin kirin (Ahmed Arif), Panzêr radibin ser me (Enwer Gökce), Gulbijêrek ji helbestên wergerî, Siwarên Rejiyê (Hêmen Kurdaxî), hatibûn weşandin. Her wiha xwendevan ji bi pirani tirkî tercîh dikirin, lê me ev tercîh pir nehîna ber çavên xwe. Ji ber vê yekê me mixabin kilîd li deriyê Weşanên Evra xist. Piştî 6-7 mehan ez û lawê min Gazin me ji nûve dest bi vî karî kir. Weşanên Han bi vî aweyî derkete meydanê. Niha em ji aliyekî ve karê xwe yê weşanê dikin û ew ji aliyê din ve ji xwendina xwe ya weşangeriyê didomîne. Ji roja 21'ê mijdarê û heta evroke nêzîkî 30 berhemên kurdî ji nav Weşanên Hanê derketin. Me biryar girtiye û ji bili kurdî ti berhemî naweşînin.

***Herî bêtir çend heb jê hatine firotin?***

Pirsyareke ne "bi dilê" me ye, mirov nikare bersiveke rast bêje, lê dîsa ji em bêjin ji sedî 15-20 tên firotin.

***Pîvanên we yên weşandina pirtûkan çi ne?***

Helbet pîvan helwesteke izafî ye, lê dîsa ji asteke ku ji aliyê her kesek bi ziman û wêjeyê ve têkeldar in heye. Bi gelemperî em dikarin bêjin pîvanên me ev in: Berhem divê yek ji zaravên kurdî be (kurmancî, soranî, kirmanckî, hewarmanî û wekî din.) Em bi zaravê soranî û tîpên latînî ji berheman diweşînin. Lê îsal û salên pêş me de em dê giranîyekê bidine ser berhemên Soranî ji. Yek ji bikar anîna zimanî divê hêsan, bi herik û vekirî be. Yanê em bêjin asteke dihête pejirandin ji bo me ji divê. Em giranî didin ser roman û helbestan. Lê lêkolînên dîrokî û wergerên felsefî ji di nav mijara me de ne.

***Çi astengiyên weşanxanê li Almanyayê hene?***

Astengiya yekem wekî her kesek dizane ev e: Kurdên bakûr hem hinê xwendina tirkî bûne û hem ji yên dixwazin ji nikarin bixwînin. Lê di salên dawî de hin pêşketin çêdibin, yanê xwendevanên kurdî zêde dibin, divê ev yek ji bê dîtin. Astengiyeke din ji kalîteya nivîsandinê ye. Mixabin di hin waran de nivîskarên Kurd hîna ji bi ya xwe dikin, yanê mîna ew bes ji bo xwe dinivîsinin. Em tiştên basît, vekirî, hem ji aliyê raman û hem ji di warê ziman de, em sadebûnê dixwezin. Wê çaxê bi rastî berhemên baş wê derkevin. Lê pirsgirêk wê her hebin û jixwe karê me ji ji bo çarserkirina van pirsgirêkan e.

***Ferqa weşangeriya kurdî ya di navbera Ewrûpa û Kurdistanê de çi ye? Avantaj û dezavantajên wê çi ne?***

Bersivdana vê pirsê ji bo min hinek zehmet e, ji ber ku ez rewşa niha ya welatê me nizanim. Lê wisa texmîn dikim baştir bûye û wê bibe ji. Her awantaj û dezewantajên herdû aliyan ji hene. Bo nimûne li welat alozîyeke mezin ya aboriyê heye, xelk nikare pêdiviyên xwe yên acîl bibersivîne, jiber vê yekê ji nikarin ji bo pirtûk û pêdiviyên çandî pere terxan bikin. Lê awantaj ji, li welat helbet jiyan bi tevger e, xwendevan û nivîskar zêdetir e. Wekî ku van salên dawî em dibihîsin, xwendevaniya kurdî li hin navendên welatê me yên wek Amed, Mêrdîn, Wan û li navendên metropol ji zêdetir dibe. Lê helbet astengiyên weşanxaneyên wê derê ji pir in. Astengiyên Ewrûpa esasen ne pir zêde ne, yanê ez wisa bawer dikim piştî çend salan li Ewrûpayê girseyeke baş ya xwendevaniya kurdî çêbibe.

***Kurdên Ewrûpayê herî zêde kijan pirtûkan dixwînin?***

Kurdên Ewrûpayê zêdetir romanan dixwînin. Ez wisa texmîn dikim di vê yekê de tesîra rehmetiyê Mehmed Uzun ji gelek çêbû. Xwendevan ji romanên wî tahm werdigirtin. Zimanê wî bi herik bû û her wiha vekirî bû. Lê mixabin xeletiyeke mezin hate kirin û romanên wî berî dema xwe hatin wergerandin û ev yek ji beşeke mezin ya xwendevanên wî berbi tirkî kişandin. Pir caran tên û ji me romanên Mehmed Uzun yên tirkî dixwazin, helbet li cem me tuneye.

***Hûn bi giştî rewşa weşangeriya kurdî çawa dibînin?***

Gava mirov asta cihanê bîne ber hev û paşê fikrekê pêş bixîne, wê çaxê bi rastî rewşa me nebaş e, lê gava ji salên 1990'an û ta niha pêşketinên di warê wêje û weşangeriya kurdî de mirov bîne ber çavê xwe, wê çaxê ji bi rastî mirov dikare gelek bi hêvî be. Ez tayê dûyem digrim destê xwe û dixwazim wî tayî heta dawî bikişînim. Belkî piştî deh salan êdî ev pirsyar ji wê nehête kirin. Ez ew qas bi hêvî me, ku piştî deh salan emê xwe bigihînin asta wêje û weşangeriya cihanê û gelek peştir ji biçin.

***Tu bixwe kijan pirtûkên weşanxanê pêşniyarî xwendevanên Rûdawê dikî?***

Bi rastî êdî berhemên xweş yên kurdî ji derdikevin. Malpera me ya pirtûkan (www.evrakitap.com) jibo vê yekê derfeteke mezin e. Her çiqas me teze ava kiribe ji, lê gelek pirtûk tê de hatine pêşkêşkirin û hîna wê gelek zêdetir ji bibe. Lê di rojên pêş me de ew dikarin Baxçeya Peyamber, Baskên Şikestî, Dîroka Împeratoriya Med bixwînin. Dîsa hilbijardeyên Ahmet Altan yên bi navê Felsefe, Cînayet, Leşkerî û Wêje - eger heta niha nexwendibin (bi tirkî) - Memê Zirav, Simyager, Xweparêziya Sokrates bi rastî bi zewq û tahmeke bilind dikare bên xwendin. Dîsa pirtûkeke mitodîrok ya Faysal Dağlı ji divê bê xwendin, lêkolîneke bi kêd e û di nivîsariya kurdî de nimûneyên wê ne gelek in.

# Konferansa 'Kurdên Almanya'



Nebî Kesen

Rewş û pirsgirêkên Kurdên Almanya vê carê mijara konfarenseke li Berlinê ye. Konfarens di roja 9'ê îlona 2009'an de û ji aliyê gelek rêxistin û kesayetan tê organîzekirin. Ji van rêxistinan hinek evin: Yek-Kom, IPPNW, Flüchtlingsrat Berlin, Internationale Liga für Menschenrechte.

Mijar û naveroka konfarensê gelek balkêş e. Civîn û konferensên ku rewşa koçberên Kurd yên li Almanya didin berçav û niqaş kirin, hîn kêmin. Ji bona vê konferensa Berlinê û encamên wê divê ji aliyê Kurdan baş bê zanîn. Mijarên axaftin û niqaşên konferensê li ser rewş û statûya Kurdên li Almanya hatine tespît kirin. Di wir de mixabin du mijar kêm in. Ew ji li ser rewşa aborî ya Kurdên li Almanya û pirsgirêkên penaberên Kurd li vê dewletê ne. Ev du mijarên rojevê ji geleki girîng in û divê herdem bên zanîn.

Mijara yekem ya konferensê li ser **"Migrasyona Kurd li Almanya: Tarix û Rojev"**ê ye. Koçberiya Kurdan ber bi Almanya heta niha ji aliyê Kurdan tê gotin, lê bi firehî ji aliyê dewlet û zaningehan nehatiyê lêkolin. Mehmet Şahin û Prof. Birgit Amman wê ditinên xwe binin ziman.

Mijara dûyem bi **"Rewş û Pêşniyarên bo Wekhevbûna Kurdan bi koçberên din yên li Almanya"** ra girêdayî ye. Wek tê zanîn Kurd li Almanya hîn ji wek grûbeke koçber bi serê xwe nayên qebûlkirin. Helwesta fermî ewe, ku Kurd bi nasnamayên netewî yên dewletan tên nav û tarîf kirin. Bi gotinek din, nêzîkî yek milyon Kurd li gora siyaseta Almanya "Tirk" yan ji "Faris" û "Ereb" in. Statûyeke koçberên Kurd li ser nasnameya wan ya netewî hîn tûne ye. Ev ji gelek pirsgirêk û astengiyan dide ber Kurdên Almanya. Li ser van pirsan axaftvanên wek Dr. Zerdeşt Haco, Prof. Urşula Boos-Nünning, Fadime Şenpınar, Kai Weber û Yüksel Koç divê ditin û pêşniyarên xwe binin ziman.

**"Bandora têkiliyên Almanya û Tirkiyê li ser entegrasyona Kurdan li Almanya"** mijarek din ya konferensê ye, ku ev aspekt ji bo statûya Kurdan li Almanya sedemek herê girîng e. Têkiliyên herdû dewletan ji aliyê aborî û siyasî di deh salên dawî da roleke negatîf li ser Kurdên Almanya lîhist. Ev mijar li konfarensê ji aliyê Prof. Norman Paech tê pirs û lêkolîn kirin.

Du mijarên konferensê yên din ji evin: **"Qedexekirina PKK'ê û tesîra wê li ser entegrasyona siyasî ya Kurdan"** û **"Têkiliya grûbên koçber yên Tirk û Kurd"**. Axaftvan Dr. Rolf Gossner, Monika Morres, Mehmet Ataç û Dr. Jürgen Miksch wê di konferensê de ditinên xwe pêşniyar bikin. Ev mijar hem ji aliyê siyaseta Almanya ya Kurd û hem ji ji bo xebata koçberên Kurd û Tirk divên bên lêkolin û niqaş kirin. Encamên vê konferensê ji bo mafên koçberên Kurd û entegrasyona Kurdan û Tirkan li Almanyayê geleki girîng in.

Mijara dawî ya konferensê ji li ser **"Çarçova siyaseta entegrasyon bo Kurdên li Almanya"** ye. Di vir de Prof. Andreas Buro, Prof. Christine Huth-Hildebrandt û Murat Çakır ê çend tespît û pêşniyaran bikin.

Raya giştî û koçberên Kurd li Almanya divê girîngiya konferensên wiha rast fam û niqaş bikin. Mijarên jorîn ji bo hemû Kurdên li Almanya, rêxistin û dazgehên wan tiştên bingehînin. Rewş û pêşveçûna me li vir bi pirskirin û bersiv dayîna mijarên jorîn ra girêdayî ne. Bi vê wateyê konfarensa Berlinê bi rastî gaveke baş e û divê beşdarî û alîkariya wê bê kirin.

# Dengê Kurdên Egêyê: Hinar




**İzmir (Diha)** - Li İzmirê kovareke nû ya kurdî dest bi weşanê kir. Kovara bi navê Hinar, li İzmirê ji aliyê TZP Kurdî tê weşandin.

Şaxa TZP Kurdî ya İzmirê ku ev demeke dirêj e xebatên xwe wek komîsyon dimeşandin, di dawiya meha tebaxê de bi merasimeke hate vekirin û yekem xebata xwe pêşkêşî gel kir. Berhema TZP Kurdî ya İzmirê ya bi navê Hinar wê du mehan careki bê weşandin û niha tenê li herêma Egeyê tê belavkirin.

Ji edîtorên kovarê Berfo Barî diyar kir ku ji bo kurdî pêş bikeve ewê kedê bidin û da zanîn ku kurdî ligel astengiyên bi salane ji pêşketina xwe didomîne. Barî destnîşan kir ku kovara Hinar ji bo kurdî wê bibe fersendek û wiha got: "Em wek TZP Kurdî ji bo di nava Kurdan de zimanê kurdî dewlemendtir bikin û pêş bixin me vê kovara wêjeyî derxist. Yekem hejmara wê rastî eleqeyek mezin hat. Kovara ku emê ji du mehan carekê derxin, pêşî li İzmirê û piştre ji li tevahiya herêma Egeyê emê belav bikin."

Edîtor Erdal Sayyiğit ji anî ziman ku kovar ji 16 rûpelan pêk tê û ewê hejmara rûpelan di pêşerojê de hîn zêdetir bikin. Sayyiğit wiha axifî: "Kurdên ku ji ber zordariya dewletê koçê metropolan kirin, mahkûmê axaftina zimanê tirkî bûn. Ev kovar wê ji bo wan kesan rêberiyê bike. Em dixwazin hemû kes li kovara 'Hinar' xwedî derkevin."

Azadiya Welat :

# Siyasetmedarên Kurd, medyaya serdestan mereq dikin

**Evdila Koçer**

Dema ku mirov behsa rojnameya Azadiya Welat bike, bêguman ekolekî tê bîra mirov ku bi dehan nivîskar, rojnameger û edîtor tê de gihane; ku gelek kes bi xêra wê fêrî xwendin û nivîsandina bi kurdî bûne. Weke tê zanîn Azadiya Welat ev sê sal in li Amedê weşana bi kurdî ya rojane dike û li Bakûr û Tirkiyê belav dibe. Berî çendekê jî rojname kete çarsaliya xwe. Bi vê munasebetê edîtorê giştî yê Azadiya Welat Tayîp Temel bersiva pirsên Rûdawê dan:



***Hin kesan jê bawer nedikir, lê va ye Azadiya Welat kete çarsaliya xwe, tu vê pêvajoya van sê salên dawî çawa dibînî?***

Vê pêvajoyê tiştek nîşanî me da. Yek ew e ku dema bê xwestin ligel hemû astengiyan weşangeriya kurdî dikare li ser piyan bimîne. Dema ku Azadiya Welat dest bi weşana rojane kir her kes li bendê bû ku di nava 3 mehan de têk biçe. Ji ber çi 3 meh? Ji ber ku me bi piştgiriya derdorên welatparêz stoka xwe ya kaxizê ya 3 mehan amade kiribû. Wan digot piştî ew biqede, hûnê jî biqedin. Lê gelê me hem li zimanê xwe xwedî derket û bi kurdî nûçe xwendin, hem jî di warê siyasî de li rojnameya kurdî xwedî derketin.

Her wiha di van salan de eşkera bû ku rojnamegeriya kurdî gihiştiye asta xweafirandinê û kurdî bûye zimanê ragihandina nivîskî. Lê hewcedarî bi qalîte û pêşvebirina wê heye. Ev pirsgirêk encax bi Konferansa Ragihandina kurdî bê çareserkirin. Herkes qebûl dike ku Azadiya Welat di vê standartkirinê de roleke girîng lîstiye.

***Hûn rojnameyê çawa amade dikin, rojeke we çawa derbas dibe?***

Rojnameya me jî wek hemû rojnameyan ji du beşan pêk tê. Yek beşa karûbarên îdarî û malî, beşa din jî beşa weşanê û karê nivîsê ye. Serê sibehê her edîtor û nûçegihan rojeva xwe amade dike. Ajansên biyanî û yên Kurd tên şopandin û rojeva wan tê wergirtin. Piştre jî civîna weşanê çêdike. Mijarên rûpelan nûçe bi nûçe tên diyarkirin û hevalên berpirsyar tên diyarkirin. Nivîsên ku hatine ji aliyê desteya weşanê ve tên xwendin û sererastkirin. Piştî nivro ji bo ku rewşa dawî bê zanîn civina manşetê tê çêkirin. Di vê civînê de hem tiştên hatine û tiştên nehatine tên eşkerakirin. Manşeta rojnameyê bi awayekî kollektif tê diyarkirin. Piştê vê civînê jî rûpel tên sazkirin û teşeya dawî ji rojnameyê re tê dayîn. Ewil çapa Tirkiyeyê tê şandin. Çapa Kurdistanê derengtir diçe çapê û lewre em zêdetir dikarin nûçeyan tê de bibînin. Çapa Tirkiyeyê li Stenbolê, ya Kurdistanê jî li Edeneyê tê çapkirin.

***Armanc û hedefên we yên nû çi ne? Di nav planên we de tişteke nû heye?***

Planên me hene. Lê tu dizanî ku di nava çapemeniya kurdî de saziyeke ku mafên saziyan biparêze tune ye. Ango Saziya Rojnamegeriya kurdî ku hemû mafên weşanên li çarparçeyan û li derveyî welat weşanê dikin, biparêze pêdiviyeke ji bo Kurd an. Ji ber tunebûna vê saziyê mirov bi rehetî nikare behsa projeyên xwe bike ji ber ku piştî du rojan tu dibînî ku çend kes gihiştine hev û ew tiştê we behsa wê dikir ji bo berjewendiyên xwe pêk anîne. Lê ez dikarim bêjim ku amadekariyên me temam bûne ku em paşguhek (ekstra) mîzahî derxînin. Em amadekariyên dikin ku bi tevlibûna kesên xeşîm ên ji hemû dezgehên rojnamegeriya kurdî hatine, dibistana rojnamegeriya kurdî ji bo 3 mehan vekin. Ev projeya Azadiya Welat wê ji bo hemû weşanên bi kurdî bibe çavkaniya xebatkarên ciwan ên profesyonel. Dîsa em dixwazin ku manşetên me salên borî yên girîng bibin pirtûkek û çîroka wan manşetên ku li ser zimanê gel bûn dirûşm bên nivîsandin.

***Astengiyên we yên herî mezin li Amedê çi ne?***

Piştî em hatine Amedê rojnamegeriya kurdî rêwîtiya xwe ya li xerîbiyê dest pê kirî piştî 100 salan li ser axa welat bi dawî kir. Em vê hatinê bi vî rengî dinirxînin. Eleqeya gel ji bo me gelek germ bû. Dema me biryar da ku em rojane derxînin li ber avahiya rojnameyê tenurek heye û dayikan nan lêdida. Her dayika ku nan lê dida para Azadiya Welat tanî.

Astengiya mezin ji aliyê dewletê ve hate derxistin. Bi taybetî hêzên ewlekariyê yên wek polîs, dadger û yên din bawer nedikirin ku rojnameyeke wisa li Tirkiyeyê derdikeve. Ango Stenbol û dewleta li wir hîn bûbû lê yên Amedê qebûl nedikir û hezim nedikir ku tiştekî wisa çêbe an jî hebe. Piştî demekê ev hêrsa wan vegeriya bi sedan doz û lêpirsînan. Dema em hatin Amedê zehmetiyên mezin derketin ku em rojnameya xwe bigihînin hemû Tirkiyeyê. Lê piştre hem buroyên me li hemû bajaran hatin vekirin û hem jî rojnameya me çû hemû bayiyên li Tirkiyeyê û ev pirsgirêk hate çareserkirin.

***Rojnameyên dinyayê carna behsa xetên xwe yên sor dikin. Gelo xetên sor ên rojnameya we jî hene?***

Rojnameya me dema dest bi weşana rojane kir, got; armanca me ya esasî ew e ku di her rewşê de berjewendiyên çandî, siyasî, civakî yên demokratîk ên neteweya gelê Kurd biparêze. Muxalefeta li dijî rantxûrî, desthilatdariya berjewendiyên malbatî û takekesî, dijberiya li hemberî înkara li ser hebûn û nasnameya gelê Kurd xetên ku em bi tu awayî neterikînin. Kîjan hêzên Kurd û ne Kurd bin ku zirarê bidin ziman, nasname û yekitiya gelê Kurd em li dijî wan in. Dîsa yek ji xetên me yên sor jî rewşa Birêz Öcalan e. Azadiya wî nabe mijara nîqaşê û rojnameya me di wê baweriyê de ye ku çareseriya pirsgirêka Kurd encax bi wî mimkûn e. Dîsa têkoşerên azadiya neteweyî ya gelê Kurd yên dijîn û yên şehîd beriya her tiştî tên.

***Sedema ku Azadiya Welat kêm reklaman werdigire çi ye?***

Azadiya Welat bi hewldan û xebatên xwe hem nivîskarên xwe, hem xebatkarên xwe hem jî xwendevanên xwe afirandin. Em behsa zimanekî ku hatiye birîndarkirin û nivkuştî dikin. Piştî em bûn rojane bazareke reklaman jî afirand. Her meh bi qasî niviyê hatina ji tîraja me ji reklaman jî tê. Li gorî rojnameyên tirkî bêguman hejmara reklamên ku em didin kêm e. Lê li gor rastiya zimanê kurdî rewşa me ne xirab e.

***Îro rojnamegeriya kurdî ya li ser înternetê gelekî berfireh bû, hûn ast û seviya wan bi giştî çawa dinirxînin?***

Baş e ku di qada ragihandina kurdî de pêşkeftin pêk tên û hejmara malper û amûrên ragihandinê zêde dibin. Lê pirsgirêkek heye. Di malperên kurdî de pîvan û exlaqê nûçeyê esas nayê girtin. Ji ber ku berpirsyariyeke yasaî û exlaqî ya malperên înternetê nîn e. Gelek caran êrîşî mafên kesan dikin. Di bin navê nûçeyê de tiştên derew diweşînin û hesab jî jê nayê pirsîn.

***Hin Kurd bi tirkî rojnamegeriyê dikin, lê karê xwe wek rojnamegeriya Kurd bi nav dikin...***

Bêguman divê rojname, televizyon û weşanên din ên ragihandinê yên Kurdan bi kurdî weşanê bikin. Lê ev nayê wê wateyê ku weşanên Kurdan ên bi zimanê biyanî divê nebin. Berevajî vê yekê divê weşanên Kurdan bi her zimanekî hebin. Ev hewcedariyek e ji bo ku Kurd xwe ji dinyayê re vebêjin.

***Çapemeniya tirk çi reaksiyonê nîşanî weşana we ya rojane dike. Gelo tu carî serî li fikreke we didin?***

Çapemeniya tirk jî ji ber ziman û nasnameya me hinekê bi guman nêzîkî me dibe. Lê belê gelek caran serî li fikr û nêrînên me didin. Bi taybetî di mijara weşangeriya kurdî de û di mijara zimanê kurdî de ez dikarin bêjim ku Azadiya Welat ji bo wan bûye referans. Her çiqas ew naxwazin behsa me bikin jî neçar man ku hin nûçe û wêneyên me yên der barê çeteyên dewletê de jî biweşînin û çavkaniyê jî nîşan bidin.

***Di vê pêvajoya nû de herkes behsa zimanê medyayê yê nerm û aştiyane dike. Hûn rola xwe di vir de çawa dibînin?***

Rast e ku zimanê çapemeniya Kurd ji ber rewşa mecbûrî li gorî dijberî û muxalefeta tund a dewletê teşe girtiye. Em jî di nava xwe de nîqaşa 'gelo divê zimanê me yê aştî û çareseriyê çawa be' dikin. Lê zimanê Azadiya Welat her tim zimanê aştiyê bûye. Rola me ew e ku em jî Kurdan ji bo çareseriyê amade bikin, lê ligel wê xetere û rîskên pêvajoyê jî bi wan bidin fêmkirin.

***Eger sibe şîrketeke wek ya Aydın Doğan an jî wek AKP'ê, rojnameyeke kurdî derxînin, hûn ê vê yekê çawa pêşwazî bikin?***

Bi şertê nêrîna xwe ya şaş li dijî Kurdan rast bikin, hebûna gelê Kurd di her mijarê de qebûl bikin dikarin rojnameyeke kurdî derxînin. Lê nabe ku wekî TRT 6'ê bi zimanê Kurdan heqaretê li Kurdan bikin û Kurdan înkar bikin. Her projeya ku ji bo berjewendiya gelê Kurd be emê piştgiriyê bidinê. Lê zêdetir bi hesabên polîtîk û bazirganî ji aliyekê ve di weşaneke xwe de Kurdan wekî 'terorist' bi nav bikin û ji aliyê din ve jî weşaneke bi kurdî derxînin, ev dibe durûtî û em ê li hemberî vê yekê bisekinin.



Rêvebira Kurdî-Derê Mekiya Ormancı:

# Partî û saziyên me, tirkî fêrî gel dikin

**Amed (Rûdaw)** - Di vê dema dawiyê de di çarçoveya pirsgirêka Kurd de zimanê kurdî dîsa kete rojeva Bakur û Tirkiyeyê. Rayedarên dewletê nîqaş dikin ku zimanê kurdî bi awayeke fermî cihê xwe di nava perwerdeya mîlî ya dewletê de bigire. Dema ku mirov behsa "Kurdî" bike, helbet Kurdî-Der (Komeleya Lêkolîn û Pêşvebirina Zimanê Kurdî) tê bîra mirov ku bi gelek şaxên xwe ve li ser zimanê kurdî xebatê dikin. Kurdî-Der, tenê îsal li Amedê 50 atolyeyên hînkirina zimanê kurdî vekirine. 950 kes ji bo van atolyan serî li komelê dane, ji vana 800 kes tevlî atolyan bûne û 400 kes belga hînbûnê stendine. Di derbarê gelek pirsên din de ji navenda Kurdî-Derê rêvebir Mekiya Ormancı bersiva Rûdawê da:

***Hun dikarin ji me re hinekî bahsa Kurdî-Der ê bikin?***

Kurdî-Der di sala 2006'an de li Amedê ava bû. Kurdî-Der ji bo pîşaftin û xwepişaftinê de hişmediyeke di nava gelê Kurd de çêbike hatiye avakirin. Heta niha me li Wan, Gever, Tetwan, Êlih, Farqîn, Nisêbîn, Cizîr û Îzmîrê vekirin. Em amedekariyê dikin ku li Çêwlik, Dêrsim, Riha, Şirnex û Mêrsînê jî vekin. Armanca me li Kurdistanê jiyaneke bi kurdî, li Tirkiyeyê zimanekî fermî û di qada cihanê de jî zimanê kurdî cihê xwe bigire. Pirsgirêka me ya herî mezin zagon in. Ev zagon li pêşiya xebatên bi vî rengî asteng in û ya din jî abori ye.

***Li dijî pişaftina zimanê kurdî çi gavên radîkal lazim?***

Li gor me gavên herî radîkal di hêla ziman de Kurda birêxistin bikin û mafê xwe yê perwerdehiya bi zimanê kurdî ji dewletê bixwazin. Eger gel bi milyonan dakevin qadan û mafê perwerdehiya bi zimanê xwe bixwaze, ev gavên herî radîkal in.

***Li alî din jî gelek tê rexnekirin ku saziyên Kurd xwe asîmîle dikin, ji vê yekê re hûn çi dibêjin?***

Mixabin wisa ye. Partî û saziyên me siyasetê bi tirkî hîn dibin û gel jî hînî tirkî dikin û bi nezanî ji pîşaftinê re xizmet dikin. Komelaya me di hêla hişmediyê de bi partî û saziyên me re hevdîtin çêkir û wan hişyar kir ku pişaftinê re xizmet nekin.

***Kurdek çima mecbûr e ku kurdî fêr bibe bi ya we?***

Ji ber ku Kurd, bi salan e zimanê wî/wê hatiye qedexekirin û ji bo vê qedexebûnê tekoşîneke bêhempa daye. Her welatparêzek û Kurdek mecbûr e li zimanê xwe xwedî derkeve. Ziman hîmê netewebûnê ye Wek Celadet Bedirxan jî gotiye: An nebêjin em Kurd in an jî bi kurdî biaxivin.

***Gelek siyasetmedarên kurd, hê jî bi tirkî siyasetê dikin, hûn vê yekê ça-wa dibînin?***

Em gelek xetere dibînin ji ber ku gel, rêveber û siyasetmedarê xwe jixwe re mînak digire.

***Gelo ji DTP'ê tu daxwazek ji bo we nehatiye ku hûn kurdî fêrî wan bikin?***

Erê daxwaz ji wan hat lê mixabin digotin; 'dema me tune ye' ne didomandin. Gilî û gazincên me li DTP'ê ew e ku siyaseta xwe û perwerdehiya siyasetê bi tirkî dikin.

***Heta niha rewşenbîr û rojnamegerekî Tirk ji bo ku zimanê kurdî fêr bibe serî li we daye?***

Ji bilî mamosteyên ku li Kurdistanê bi eslê xwe Tirk in, tu rewşenbîr û rojnamegerên Tirk nehatine hînî zimanê kurdî nebûne.

***Eger pirsgirêka Kurd bê çareserkirin, divê statuya zimanê kurdî di vir de cihê xwe çawa bigire?***

Ji dibistanê seretayî bigire heta zanîngehan mafên zimanê kurdî bê dayîn Eger ne wisa be pirsgirêka Kurdan çareser nabe. Eger ku vî mafê xwezahî nedin gelo ew ê kîjan mafan bidin Kurdan?



***Hûn weşana TRT6'ê çawa dinirxînin?***

TRT-6 weşana dewletê ye û ji bo armanca ku gelê Kurd bêxapandin, hat avakirin. Ne ku qedexeyê li ser ziman ranekiriye û maf nedaye tu kesî ku tv bi kurdî vekin. Yanî di hêla zagonan de Kurd û zimanê Kurdan hê jî qedexe ye. Me erênî ya wê weşanê ji bo gelê Kurd neditiye. Lê ji bo dewletê mirov dikare bi erênî şirove bike sistema dewletê 80 sal e ku bi tu awayî Kurdan û zimanê Kurdan qebûl nedikir ji bo wê yekê mirov dikare bi erênî binirxîne.

***Di medyaya kurdî de şaşitiyên herî mezin ên ku di derbarê ziman de têne kirin çi ne?***

Şastiyên herî mezin ji ber ku Kurd bi salan bi zimanê tirkî perwerdebûne bi mantika zimanê tirkî nêzî zimanê xwe dibin û di hêla rêzimaniyê de derdikeve pêşiya mirov.

***Ji bo ku li Bakur zimanê kurdî gur û geş bibe, divê nivîskar û rewşenbîrên Kurd çi rolî bilîzin?***

Bila pêşî zarokê xwe hînî zimanê kurdî bikin. Di nava cikava Kurd de herî yê ku tên rexnekirin nivîskar û rewşenbîrê me di mala xwe de zimanê tirkî bi kar tînin. Zarokên wan bi zimanê kurdî nizanin. Ku ew dixwazin geş bibe bila ji mala xwe dest pê bikin.

***Lê li aliyê din jî gelek rewşenbîrên Kurd xwe bi tirkî îfade dikin...***

Eger xwe bi tirkî îfade dikin mirov nikare bibêje rewşenbirin Kurd in ew rewşenbîrên Tirk in.

# Dizeyî: Konferansa netewî

*(Ji Rûpela 1)*

*Medya Kurdî van rojan gotegotên zêde derbarê postan de belav dike. Li gor hineka Nêçîrvan Barzanî li Bexda postê werdigre, gelo ev rast e?*

Di civaka me de gotegot diyardeyeke berbelav e. Dibe hinek ji wan rast in û hinek ji rastiyê dûr in. Diyar e di hilbijartinên vê dawiyê de Lista Kurdistanî lista piraniyê bû loma ji mafê wê ye kabîneya nû ya hikûmetê pêk bîne. Nêçîrvan Barzanî endamê Politburo ya PDK'ê ye û karaktereki bihêz e. Bi vê hêza kesatiya xwe dikare li kû dibe ji ximzetê bike çi li Kurdistan yan li Bexda lê heta îro tu biryar derbarê destnîşankirina postê Nêçîrvan Barzanî nehatiye sitendin.

*Ez li gel hinek xelkên Hewlêrê axifîm, gumanên wan hene jiber Berhem Salih xelkê Silêmanî ye û piraniya butçeyê li ser wê serf dike, kabîneya nû ya hikûmetê wan paşgwih bixe?*

Ev guman ne di cihê xwe de ne. Dibe ku zimetguzarî li Silêmaniyê bi kêm û kasî hatibe pêşkêşkirin lê sedemê vêna ne eve ku hikûmetê xizmeta Silêmanî nekiriye jiber butçeyeke diyarkirî bo encûmenê her parêzgehekê tê terxankirin û mixabin gotegotên zêde hene derheqa asta nizm ya xizmetguzariyan û xirab bikaranîna desthilatê li Silêmaniyê. Parêzgarên Dihok û Hewlêrê karekî baş dikin, gelo bo Parêzgarê Silêmaniyê ji wiha nake? Berî yekkirina herdû idareyên Herêma Kurdistanê, idareya Hewlêrê nikaribû tu karî li Silêmanî bike, jiber butçeya taybet a wê hebû, vê rewşê domand heta sala 2005an dema herdû hikûmet bûne yek. Ji 2005an û şûnde, xizmet bo Silêmanî hatiye kirin.

*Di hevpeyvîneka berê de endamê Politburoya PDK'ê Kemal Kerkûkî bo min got dibe ku di meha 3 yan 4an ya sala bê kongirê PDK'ê bê lidarxistin?*

Dem heta niha nehatiye diyarkirin. Destpêka îsal Komîteya Serkirdayetiya PDK'ê civiya û biryar girtbû di meha 9 yan 10an de kongrê lidarbixe, lê belê bi sedemê encamdana hilbijartinên vê dawiyê yên Herêma Kurdistanê û mijûlbûna bi pêkanîna hikûmetê û hilbijartinên nû yên Îraqê derfet tune bû bê girêdan. Lê bê guman di kongrê de wê xwîneke nû û kesên nû bên pêş, lewre dibe ku di buhara sala bê de kongire bê girêdan.

*Heta kongre neyê sazkirin, kesên nû nayên pêş?*

Kongre rê li pêşiya beşdarbûyên nû vedike. Ji dema deh salan ve kongirê me nehatiye girêdan, di vê demê de siyasetmedarên nû û gênc dirust bûn, berê berpirsên liqan endamên serkirdayetiya bûn, lê îro kadroyên navîn in û dibe ku di kongreya dahatû de ger bên hilbijartin û bibin endamên serkirdayetiyê.

*Ji rêvebirên PKK'ê Murat Karayılan, digot di berjewendiya Amerîka de ger pirsa Kurd li Tirkiyê û navçeyên derdorê bê çareserkirin. Lê li gor wî Fransa û Almanya naxwazin pirsgirêka Kurd li Tirkiyê çareser bibe, jiber ew naxwazin Tirkiyê tevlî Yekîtiya Ewrûpa bibe, nerîna wê çiye?*

Ger pirsa Kurd li Tirkiyê bi riya demokrasiyê bê çareserkirin, divê piştivanî û pêşwazî lê bê kirin. Çi ji aliyê Amerîka yan Ewrûpa ve be. Derbarê rola Amerîka ji, ew ji dil in û vekirî û Tirkiyê dehf didin ber bi çareserkirina Pirsa Kurd û di heman demê de ji berê piştgiriya kiryarên Tirkiyê kiriye li dijî PKK'ê di riya misogerkirina agahî û hin tiştê din. Derheqa rola Ewrûpiyan ji, bawer dikim ew ji ji dil dixwazin pirsa Kurd çareser bibe. Demeke YE hinek merc û krîter danîne bo qebûlkirina endamtiya Tirkiyeyê. Di pêşerojê de ji, rola Tirkiyê li navçeya Rojhilata Navîn giringtir dibe, bi baweriya min pejirandina Tirkiyê wek endam di YE de li berjewendiya YE ye. Tevîbûna Tirkiyê di nav YE de li berjewendiya gelê Kurd e. Em wek Îraq bi giştî û wek Kurd bi taybetî dibin cînarên rasterast ên Ewrûpa, û herwiha Pirsa Kurd li Tirkiyê ji dikare bi riyên asantir bê çareserkirin û dibe alîkar bo çespandina aramiyê li navçê.

*Gelek hêz û aliyan nerînên xwe di derbarê nexşerê ya Abdullah Öcalan anîn ziman, gelo nerîna PDK'ê çiye?*

Em bi hurdî çavdêriya rewşê dikin. Helwesta me li beramberî şer û tundûtûjiyê diyar û eşkere ye, bi baweriya me ne riyeke baş e bo bidestve anîna armancan. Me bahsa girêdana konferanseke Kurdî neteweyî kir li jêr çavdêriya Serok Barzanî lê pirsgirêka PKK'ê pirsgirêkeke navxwe ya Tirkiyê ye û Tirkiyê baştirin alî ye dikare wê çareser bike. Ger pêwist be, em hemû dikarin alîkariyê bikin.

*We tu pêşniyar beramberî nexşerê ya Öcalan pêşkêş nekirin?*

Na, lê ger konferansa neteweyî ya Kurd birêve biçe wê navçe hemû behsa wê bike û binirxîne û behsa pêşniyar û nêtên Tirkiyê bê kirin, herwiha gotûbêj di derbarê hizr û baweriyên PKK û DTP'ê û hêzên Kurdî yên din ên Tirkiyê ji tê kirin, ev hemû dê bê gotûbêjkirin ger konfirans pêk hat.

*Çima heta Tirkiyê helwesta xwe eşkere neke ev kongre nayê girêdan?*

Divê em bizanin helwesta Tirkiyê çiye derheqa çareserkirina pirsa Kurd û gelo heta ku dikarin herin û gelo mercên çekdanîna PKK'ê çiye...htd. Bi giştî, mebesta konferansê redkirina şer û çespandina aştiyê ye.

# Kurdên Rojhilat: Berbi federasyonê

*(Ji Rûpela 1)*

Nebûna atmosfereki bi kêr ji bo bicihkirina wê sîstemê li Îranê û heta li Rojhilatê Kurdistanê ji sedemeke, ku piraniya rexnegirên sîstema federasyonê li ser bilindkirina vê dirûşmê bi fikarin. Mamosteyê zaningehê û Berdevkê Eniya Yekgirtî ya Kurd li Tehranê Dr. Rehîm Ferehmendî li ser wê baweriyê ye, ku faktorên pêwîst ji bo bicihkirina sîstemeki rêveberiyê ya weki federalîzmê li Îranê tuneye. Li gor Ferehmendî ji bo bicihkirina federalîzmê di her civakekê de, pêwîst e civak ji hin qonaxan derbas bibin. Lê ya ku li Îranê tê dîtin ew e ku tu merc û pîvanên pêwîst ên wek kultûra lihevkirin û hevqebûlkirina demokrasiyê û mafên hev nayê dîtin. Dr. Ferehmendî wiha dibêje: "Di rewşeki wiha de bilindkirina dirûşmeki bi wî awayî ne mantiqî ye."

**Komela: Federalî**

Piştî parçebûna ku di dawiya sala 1999'an de di nav refên Rêxistina Komelayê de çêbû, Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê (aliyê Muhtedî yê wê demê), di kongreya xwe de dirûşma federalîzmê wek guncawtirîn rê ji bo bidesxistina mafên gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê bilind kir. Lê beriya parçebûnê partiyê pêkanîna civakeke sosyalîstî – komunîstî stratêjiya sereke ya wê partiyê bû. Endamê Komîteya Navendî yê Komeleya Zehmetkêşên Kurdistanê Newid Mêhr Awer ne di wê baweriyê de ye, ku bilindkirina wê dirûşmê ji bo kişandina bal û raya xelkê Kurdistanê piştî parçebûna sala 1999'an de be. Newid di vê derbarê de wiha dibêje: "Bilindkirina dirûşma federaliyê di kongreya 9. ya rêxistinê di sala 2000'an de çêbû û guherîna dirûşmê di rastiyê de ji ber guhertina rewş û zirûfên nav civaka Rojhilatê Kurdistanê pêk hatiye. Di rastiyê de ew guhertin ne guhertineki bingehîn û tevahî bû, tenê di çarçoveya pirsa netewî de ji bo û ti guhertinek di stratejiya me ya ji bo piştgirî ji xelkê xizan û kedkar pêk nehatiye û niha ji em xwe wek piştevanê xelkê hejar û karker dihesibînin."

**PDKÎ: Bandora Başûrê Kurdistanê**

Endamê Komîteya Navendî yê PDKÎ Rambud Lutfpûrî ji di derbarê guhertina dirûşma Partiya Demokrat ji otonomî bo federalîzmê wiha axifî: "Nabe li derdorê te guhertin çê bibe, lê bandor li ser te tune be. Bêgûman ew guhertina ku li Îraqê û bi taybet li Başûrê Kurdistanê çêbû, bandora rasterast û nerasterast li ser Partiyên Rojhilatê Kurdistanê ji kir." Lê Rambud Lutfpûrî wê tenê wek sedema guhertina dirûşm û stratêjiya wê partiyê qebûl nake: "Beşeki ji wê guhertinê ji vedigere salên destpêka şoreşa gelên Îranê ya sala 1979'an, dema ku Dr. Qasimlo bahsa federalizmê weke sîstema herî guncaw a rêveberiyê ji bo Îranê destnîşan kiribû." Di derbarê bikêrhatina federalizmê wek sîstema rêvebirina Îranê di pêşerojê de ji, Lutfpûrî wiha dibêje: "Bi berçavgirtina wê yekê ku demokrasî û hevqebûlkirina mafên hev di nav netewên Îranê de di demên borî tunebûye. Herwiha ew dilxwaziya bihevrejiyanê, ku ji bo bicihkirina sîstemeki federal pêwîst e, di nav netewên cuda ên Îranê de nayê dîtin. Ji ber wê ji ne otonomî û ne ji federalîzmê wek sîstemeke baş û guncaw ji bo rêvebirina Îranê di pêşerojê de dibînim."

Li beramberê fikra Lutfpûrî de Newid Mêhr Awer di wê baweriyê de ye, ku ne tenê zemîneke kêrhatî û baş ji bo bicihkirina sîstema federalî li Îranê heye û dide zanîn: "Federalîzm riya herî bikêrhatî ye ji bo pêşlêgirtina parçebûna Îranê."

Bilindkirina wê dirûşmê ji aliyê opozîsyona Îranê li derveyî welat ji wekî sîstema rêvebirina Îranê ya pêşerojê piştgiriya federalîzmê nakin û heta bi xurtî dijberiya wê sîstemê dikin. Beşek ji wan hêzan federalîzmê wekî derfetekê ji bo guherandina sînorên niha yên Îranê ji dinirxînin.

# Zindana Amedê

*(Ji Rûpela 1)*



**Mehdî Zana**
**(Kevne şaredarê Amedê):**

Ez naxwazim wan rojan dîsa bînim bîra xwe. Biranînên vê zindanê min diêşîne. Ew zindan divê li cihê xwe bimîne, divê mirovahî bibîne. Wê feyda wê ji mirovatiyê re hebe. Li ser tiştek axaftin cuda ye, dîtin cuda ye. Kesên ku wê zindanê bibînin wê bizanibin li wir çi pêkhatiye. Wê tu kes êdî nikaribe tiştek wisa ava bike. Wê ev zindan di pêşerojê de ji mirovahiyê re bibe nimûne. Gelek pirtûk hatin nivîsandin, gelek kes axifîn. Ev hemû li cihanê belav bûne, her kes dizane ku li wir çi anîne serê insanan. Divê evder bibe muze. Ki here wê derê wê li sûcdaran lanetê bike, li bûyeran. Kesên ku di wê girtîgehê de mane, di serê hemûyan da ev yek heye: Ewê rojek bibin xwediyê dewletek û ew der wê rojekî bibe muze.



**Şerafettin Kaya**
**(Parêzer):**

Ez li wê zindanê 8 meh mame. Bûyerên ku min di wan 8 mehan de dît li aliyekî û hemû temenê min li aliyê din. Nifşa me êş kişand, lê divê nifşên ciwan wan tiştan nebînin. Jiber vê yekê girtina zindanê biryarek gelek rast e. Lê divê bibe muze ku ciwanên me paşeroja xwe nasbikin. Muze herwiha dibistanên civakî yên vekirî ne. Wê ev muze bixe wek dibistaneke dîrokî karbike.



**Nurettin Yılmaz**
**(Kevne parlamenter):**

Ez yek ji şahîd û mexdurê wê dîrokê me. Li wê zindanê şexsiyeta însan dihate şikandin, rûmeta mirovahiyê binpê dibû. Her dem bi şiara, 'Tirk im, rast im' û sund bixwe... Dema min digot, 'ez ne Tirk im, ez Kurd im' digotin 'ka bêje 'tahta (dar) bi zimanê te çi ye?' Min digot 'taxte ye.' Û digotin 'tu henekê xwe bi me dikî.' Hemû rêbazên li dijî mirovahiyê bikardaniyan, heta pîsî didan xwarinê. Ji bo ku artêş ji vê rûreşiya xwe fedî bike û li Kurdistanê ev cinayetên rewa neyên kirin, divê zindan bibe muze. Çawa ku dema Naziyên Alman, Cihuyan şewitandin û qampê wan îro muze ne û cihan li wan kiryarê li dijî mirovahiyê temaşe dike, herkes wan Bûyera nalet dike, divê zindana Diyarbekirê ji bibe muze û bi wêne û amûrên işkencê, werin pişandan. Bila herkes wê rûreşiyê bibîne da ku carek din ew roj venegerin.



**Nuran Maraşlı**
**(Siyasetmedar):**

Zindana Amedê dişibe wek ordigeha Naziyan Sachsenhausenê. Jin, mêr, komunîst, Cihû bi hezaran kes xistibûn wê derê û li wan işkence kiribûn. Divê neyê xirakirin. Wek ku hemû kamp û zindanên Naziyan xirab nekirin û kirin muze, divê zindana Amedê ji bibe muze. Ji bo zarokên me bi paşeroja xwe bizanibin. U dive li ser deriyê hepsê wiha bê nivîsandin: Paşerajo xwe bizanibin! Zindanê Amedê herwiha bûye navenda perwerdeya jina Kurd di aliyê siyasî de. Mêr di hundir de, jin li derve bûn û herdû aliyan li berxwedan.



**Selim Çürükkaya**
**(Nivîskar):**

Zindana Amedê hem mîlada Kurdan e, hem ji celladê wan e. Divê Kurd çi bikin çi nekin, wê zindanê xira nekin. Kesên ku zindanê xira bike, dixwaze bûyerên ku li wir pêkhatine ji mêjiye me derxin. Divê ew zindan wisa bimîne û bibe muze da ku em dengê xwe, rastiya wê zindanê karibin ji cihanê re bash bikin. Bûyerên ku li wê zindanê pêkhatin nayên jibîrkirin. Kes nikare li me daxwaza jibîrkirinê ji bike. Ez û çend dostên xwe li ser zindana Amedê fîlmeki dokumanter amade dikin.

**Dr. Işık İşcanlı**
**(Psikiyatrist):**

Dema ku me birin wê zindanê hîn inşaat neqediyabû. Em 20 girtiyên jin bûn, piranî ji PKK'yî bûn. Ez bawer dikim ku çend sal berê dest bi inşaata wir kiribûn. İşkenceyê ku li wir hatine kirin li tu cihekî nehatiye kirin. Ez çend kes nasdikim ku piştî ji zindana Amedê derketin hemû diranên xwe kişandine. Yek ji wan diranê xwe bi destê xwe kişandiye. Di psikiyatriyê de ji bûyerên wiha re 'sendroma xwe pakkirinê' tê gotin. Di siyasetê de mirov dikare rûpelên spî veke, lê di jiyana mirovan de demên borî nayên jibîrkirin û nayên pakijkirin. Jiber vê yekê divê ew zindan bibe muzeya işkenceyê, muzeya şermê.

**Şerif Kaplan**
**(Nivîskar):**

Li wê zindana wek kampa şer, xwestin ku hêzên Kurd ên siyasî qir bikin. Bi hezaran ciwan û siyasetmedarên Kurd li wê zindanê birîndar ketin, hatin kuştin û ciwantiya xwe winda kirin. Rûyê dewleta Tirk ê hovane li wê zindanê derkete holê. Her wiha cihê ku vejîna Kurdê nû, Kurdê azadixwaz e. Min romaneke 400 rûpel nivîsand lê dîsa ji nikaribû wan rojan binim ziman. Li ser girtiyan hemû metodên işkenceyên nedîtî ceribandin. Her kesekî bi rengekî cûda mirin û işkenceyê naskir. Ji bo çareseriyeke rast, vijdanê civakî divê ew zindan bibe muze; lê muzeyeki çawa? Muzeyeke ku tê de dem radiweste. Weki dîn tu wateya wê tuneye. Tenê muzeya ku tê de zeman disekine dikare wê hovîtiyê jibîr nebe.

**Celalettin Can**
**(Serokê Komîsyona Lêkolîn û Dadê ji bo Girtîgeha Diyarbekirê):**

Ev du sal in em wek girtiyên zindana Amedê li ser du xalan dixebitin. Yekem: Em li ser girtîgehê lêkolînan lidardixin, têkilî bi girtiyan re datînin, wêne û dokumanteran dicivînin. Duyem: 'Bila Girtîgeha Amedê Bibe Muze' xebata me ye. Em daxuyaniya Mehdî Eker wek ku projeya me didize û naveroka wê vala dike, dinirxînin. Niha em 33 girtiyên ku li wê zindanê mane, herwiha tevî 420 girtiyên ku bi me re di têkiliyan de ne, malperek ava dikin û wek rewşenbîrên ku ji qirkirina Ermeniyan lêborîn xwestin, kampanya îmzeyan vedikin. Piştî tomarkirina van îmzeyan emê xebatên xwe di yarê capemaniyê bikin.

**"Wê arşîva civaka Kurd ji holê bê rakirin"**

Kampanya îmzeyê ku bi piştgiriya nêzî 400 akademisyen, siyasetmedar, hunermend, helbestvan û nivîskarî roja 28'ê tebaxê dest pê kir, li ber Girtîgeha Amedê bi daxuyaniyek hat eşkerekirin. Parlamentera berê ya DEP'ê Leyla Zana û Baskın Oran jî pistgirî didin kampanyayê. Cîgirê Serokê Giştî yê İHD'ê Muharrem Erbey ji Rûdawê re ragihand ku saziyên civakî, akademisyen, rewşenbîr, mexdûrên girtîgeha Amedê û İHD bi mabesta ku 'girtîgeh bibe muze' cara yekem civiyan. Erbey got ku wê hewldanên wan berdewam bikin û komcivîna li ber deriyê girtîgehê mînak nîşan da. "Dibêjin emê girtîgehê xirakin, di şûna wê de dibistan çêkin, bi vê hewldanê wê arşîva civaka Kurd ji holê bê rakirin û mirov nikaribin bi paşeroja xwe re rûberî hev bin. Em dixwazin evder bê valakirin û bibe abîde yan ji muzeya mafên mirovan."



# Yemen dibe Afxanîstana dûyem!

**Serwisa Cîhanê** – Rêxistina Al-Qaida ku li Afxanistanê bi hikûmeta Hamid Karzayi re di nav reqabeta desthilatdariye de ye, li xizantirin welatê nivgirava Erebi, li Yemenê ji bi cih bûye û di nav hewldanên berfirehkirina bandora xwe deye.

Herçiqas pirsa bipaşveşandina derdora 100 girtiyên Yemeni ku niha li Guantanamoyê tên girtin, pêwendiyên navbera Dewletên Yekbûyi yên Amerikayê (DYA) û Yemenê sar kiriye ji, lê DYA'yê ji ber bihêzbûna rêxistina Al-Qaida li Yemenê bi gûmanin. Li gor DYA'yê hikûmeta Yemenê bi qasi ku pêwiste li diji rêxistina Al-Qaidayê tênakoşê û desthilata Yemenê dixwaze ku ew çalaktir li diji wê rexistinê tevbigerin û têkiliyên di navbera istixbaratên herdû welatan de bên xurtkirin. Şêwirmendeki beşa şerê li diji terorê li Wezarêta Derve ya DYA'yê Shari Villarosa daxuyand ku rewşa ewlekariyê li Yemenê geleki xirab bûye: "DYA'yê dixwaze alikariya Yemenê bike, ji ber ku em naxwazin ku Yemen bibe Afxanistaneki nû, ku Al-Qaida li wir li diji me çalakiyan amade bike û lidarbixe."

Li gor nêrina Kordinatorê Yekitiya Ewrûpayê yê Têkoşîna Diji Terorê Gilles de Kerchove Yemên ketiya rêya heri baş ku bibe "Afxanistana dûyem." Li gor Kerchove pêwistiya Yemênê bi alikariya ji derve heye, ji bo ku nebê hêrêmeki ku Al-Qaida ji wir çalakiyên xwe bi rêve bibe. Di destpêka isal de komên Al-Qaidayê li Yemenê û Siûdi-Erebistanê bûne yek û di bin navê Al-Qaida ya Nivgirava Erebi (AQAP) tevdigerin. Tê idiakirin ku di demên bori de hinek şervanên Al-Qaida ji Pakistan û Afxanistanê derbasi Yemenê bûne. Bavê Osama bin Laden ê Serokê Al-Qaidayê ku li Erebistana Siûdi ji dayik bûye, bi eslê xwe ji Yemênê ye.

Li aliyê din Hikûmata DYA'yê li herêmê hewl dide ku li diji Al-Qaida şerbêkirin. Piştî ku Generalê Artêşa DYA'yê li Rojhilata Navin David Petraeus dawiya meha bori ligel serokê Yemenê Ali Abdullah Saleh hêvditinek pêk ani, hêzên wi welati li herêmeke Yemenê ya ku weki cihê Al-Qaidayê tê hesibandin operasyoneki leşkeri lidarxistibû.

**Çalakiyên Al-Qaida li Yemenê:** Di têqineke li diji Keştiyeke Şer ya DYA'yê a di sala 2000'an de 17 leşkerê Amerikî hatibûn kuştin. 2002'an teqinek li diji keştiyeki Fransi pêk hat. Di encama erişeki li diji parêsgeheke olî li rojhilatê paytexta wî welati Sanayê heşt turistên Spani jiyana xwe ji dest dan. Di sala 2008'an de du erişên bombeyi li diji balyozxaneya DYA'yê li Sanayê pêk hat. Beriya şeş mehan di encama erişeki de ji çar turistên Koreya Başûr mirin.

AFTONBLADET

# Swêd û Îsraîlê berîhev da



*Rojnamevan Donald Boström*

**Serwisa Cîhanê** – Swêd a ku bi qanûnên xwe yên liberal di warê azadiya çapemeniyê de navdar e, ber bi skandeleki ligel hikûmeta Îsraîlê dişemite. Gengeşiya ku bi gotareke rojnameyeki Swêdi destpêkir, her kû diçe mezin dibe û bûye sedema nexweşi tawanên di navbera herdû welatan de.

Rojnameya Swedi "Aftonbladet" beri demeki nivisa rojnamevan Donald Boström bi sernivisa "Organên zarokên me tên talan kirin" weşandibû. Di wê gotara xwe de Boström bahsa malbaten Filistini kiribû ku artêşa Îsraîlê bi diziya organên kesên Filistîniyê ku di şer de hatibûn kuştin, sûcdar dikirin. Bost- röm di nivisa xwe de ti delilên weki raporên otopsiyê peşkeş nekiribû, lê daxwaza lêkolînan kiribû.

Ji hingê ve li Îsraîlê hersa siyasetmedarên wi wela- tî û ya Îsrailiyan herkû çû, mezintir bû. Îsraîli vê nivisê weki, anti-semitizmê' dinirxinin û li benda lêborînê ne. Serokwezîrê Îsraîlê Benjamin Netanjahu ji ji hikûmeta Stokholmê xwest ku ew vê nivisê bi fermi şermezar bike. Endamên hikûmetê û şirovekarên Îsraili ji daxwaza "reaksyonên pêwist" dikin. Wezirê Derve yê Swêdê Carl Bildt di malpera xwe ya taybet de sûcdarkirinên Îsraîlê red kir û dibeje ku divê berpirsyariya vê meselê rojnameya ku nivis belav kiriye hilgirê lê ne Hikûmeta Swêdê.

Li aliyê din heta ji Wezîre Dervê yê Îsraîlê Avigdor Lieberman tê, ew atmosferê germtir dike. Lieberman reaksyon nişan nedana hikûmeta Swêdê şiband "bêdengiya" wî welati di dema qirkirina Cihûyan di dema Naziyan de û tiliya xwe kir birineki diroka Swêdê, ku di dema şerê duyem yê cihanê de hem bêteref û hem ji bedeng li hemberi kiryarên rejîma Naziyan mabû: "Ev yek helwesta Swêde ya di şerê duyemê cihanê tinê bira me, wê demê ji tu kesi tiştek nekir."

Heta niha hikûmeta Swêdê bi mebesta çapemaniya azad ew nivis ne şermezar kiriye, ne ji lêborin xwestiye. Tenê balyoza Swêdê li Tel Aviv ê Elisabet Borssin gotara rojnamevane Swêdi bi "bêberpirsyari" û kareki qirêj binav kir û Borssin ji bêr vê reaksyona yekali li Swêdê hat rexnekirin.

Ev aloziya di navbera Swêd û Îsraîlê dişibê bûyera beri 4 salan ku bi weşandina çend karikatûrên Mihemed Pêxember dest pê kiribû. Wê demê rojnameya Danimarki "Jyllands-Posten" karikatûrên Hz. Mihemed weşandibûn û vê yekê rê li pêşiya reaksyonên tund ji aleme Musulman vekiribû. Hikûmetên Ereb û yên welatên Musulman ji Danimarkayê xwestibûn ku bi fermi lêborina xwe ji welatên Musulman bixwaze. Serokwezîrê wê demê yê Danimarkayê û Sekreterê niha yê NATO'yê Anders Fogh Rasmussen azadiya çapemeniyê li welatê xwe bibîranîbû û ji ber vê yekê lêborin red kiribû. Mina Rasmussen niha Serokwezîrê Swêdê Fredrik Reinfeldt jî weki sedema bêdengiya xwe azadiya çapemeniyê li Swêdê nişan da û lêborineki fermi red dike û wiha got: "Tu kes nikarê bixwaze ku hikûmeta Swêdê makezagona xwe bin pê bike."

Di vê navberê de hat ragihandin ku rojnamevanê Swêdi Boströms wê mecbûri terkirina Îsraîlê bê kirin. Li gor daxuyaniyên çapemeniya Îsraili Wezîrê Navxwe yê Îsraîlê Eli Jischai ferman daye saziyên pêwendidar kû destûra mayina Boströms li Îsraîlê neyê dirêj kirin.




## Rohîngya:

# Gelekî jibîrkirî



**Serwisa Cîhanê** – Gelê Rohingya geleki Musulman e û bi pirani li rojavayê Myanmarê li herêma Arakan dijin. Ev nêzi niv sedsali ye, ku Rohingyi ji ber zilma li Myanmarê direvin. Niha li bakurê Arakan ku dikeve ser sinorê Bangladeşê, nezi milyoneki Rohingyi dijin, bi qasi wan ji ji ber zilma desthilata leşkeri ya Myanmarê weki penaber li Bangladeşê û welatên din yên Asyayê bi cih bûne.

Piştî pevçûna di navbera Bûdistên Arakanê û Rihîngyi de, di sala 1978'an 200 hezar Rihingyayi reviyan Bangladeşê û di sala 1991'an de 250 hezarên din ji bûn koçber. Li gor texminan ji dema serxwebûna Myanmarê milyonek heta milyon û niv Rohingya ji welatê xwe reviyan e. Piraniya wan li Bangladeş, Pakistan, Erebistana Siûdi, Tailand û Malaysiyayê bi cih bûne. Rihingyayi dewleta Myanmarê sûcdar dike ku dixwaze wan ji wê herêmê baqijke û Bûdistan li wir serdest bike.

Rohingyayên penaber li welatên cinar ji li şûna alikariyê rasti bêeleqe û xizaniyê tên her vaha di şerten pir xirab de û di nava birçîbûnê de dijin. Li wan welatan ji penaberên Rohingyi bi şidet û zilma rayedarên herêmi rûbirû ne. Li gor agahiyên Saziya Gelê Li Ber Windabûnê a Almani Gesellschaft für bedrohte Völker (GfbV) welatên Başûr-Rojhilatê Asyayê alikariya penaberên Rohingê nakin û wan bi zorê dise vedigerinin Myanmarê.

Desthilata Myanmar ne tenê di jiyana rojane de hewldide ku Rohingya di bin zextan de bihêle, ew bi qanûnan ji nefesê li wan teng dike. Li gor qanûna hemwelatiyê a sala 1982'an Rohingya weki yek ji 135 gelên resen yê Myanmarê nehatin qebûlkirin û ji ber wê ji mafê wan yê hemwelatiya wi welati tune. Hikûmeta Myanmarê wan weki Bengalên Musulman dihesibinê. Niha 720 hezar Rohingyi weki hemwelati nayên pejirandin, pasportên wan ninin û bi gelek pirsgirêkên din wek bêhemwelatiyê rûbirû diminin.

Di raporteki ku Rêxistina Çavdêriya Mafên Mirovan Human Rights Watch gulana bori eşkere kiribû, wê rixistinê bangi Yekitiya Welatên Başûr-Rojavayê Asyayê (ASEAN) kiribû ku li gelê Rohingya xwedi derkevin û her wiha Civaka Navnetewi ji rexne kiribû ku ew weki pêwiste bi rewşa wi geli bindest mijûl nabin. Rêxistina navbori dibeje ku gelek Rohingyi bi sêdarkirinên bêyasayi, karkirina bi zorê, zilma ji ber motîfên olî û gelek pinpêkirinên din rûbirû diminin.

Di çileya 2008'an de qedera Rohingya ketibû rojeva cihanê, dema 1.190 penaberên Rohingyi li ser keştiyekê bi rojan li beravên welatên Asyayê digeriyan û welateki destûr nedida wan ku ew bên erda wan. Piştî ku keşti nêziki berava Taylandê bûbû, polisên deryayê ên wi welati keştiya penaberan disa kişandibû ser deryayê û di encamê de bi sedan kes jiyana xwe ji dest dabûn.



# Çîn organên îdamkiriyan difroşe

**Serwisa Cîhanê** – Li Çînê salane bêtirî 5 hezar kes ji ber sûcên curbecur tên îdamkirin. Rayedarên Çînê bi fermi qebûl kirin ku organên kesên ku tên sêdarkirin di transplantasyonan de tên bi kar anin. Lê li derveyi sistema fermi, bazareki reş ya organên girtiyan ji li Çînê peyda bûye.

Ev demeki dirêje rêxistinên mafên mirovan li derveyi Çînê guman dikirin ku li Çînê organên kesên sêdarkiri tên derxistin û ji bo transplantasyonan tên bikaranin. Niha ji çapemeniya Çînî ya dewletê ew iddia erê kirin û ragihandin ku ji sisêya du organên ku di transplantasyonan de tên bikaranin, yên kesên ku tên sêdarkirin e.

Li gor agahiyên ku rojnameya "China Daily" çarşema bori belav kirin, pispor ihtimal dikin ku ji sedi 65'ên organên ku di transplantasyonan de tên bikaranin, yên girtiyên sêdarkiri ne. Cigirê Wezîrê Tendurustiyê yê Çînê Huang Jiefu di vê derbarê de got ku girti ne çavkaniyeki guncav yê transplantansyona organên mirovan e. Wî herwiha daxuyand ku li diji daxwaza ti girti organên wi nayên derxistin û erêkirineki niviski ji aliyê girtiyan şert e. Rojnameya navbori herwiha ragihand ku bazareki reş bi organên girtiyan li Çînê bi berfirehi tê meşandin û ji ber libêrçavnegirtina qanûnên di derbarê organên girtiyan de, hinek kes qezenceki mezin ya madi ji vê bazarê digirin. Ji ber ku bijişkên ku organên girtiyan derdixin bi gelek saziyên dewletê re têkildarin, gelek rê ji bo sixtekari û gendeliyê peyda dibin. Li gor texminên Hikûmeta Çînê niha bêtirî yek milyon û niv Çînî hewcedarên organa ye, lê ji ber kêmbûna organan salan e tenê 10 hezar emeliyat tên pêkanin.

Herçiqas di salên bori de hinek qanûn ji bo astengkirina bazirganiya organên mirovan derçûn ji, lê tê idiakirin ku gelêkên wan organan bi rêyên neyasayi digihijin mişteriyên dewlemend. Bihayê transplantasyonan li Çînê di navbera 10 û 20 hezar Euro deye û kesên ku organan distinin mecbûrin wan peran bidin. Di qanûneki ku di sala 2007'an de hatibû derxistin, bazara bi organan hatiye qedexe kirin û destûra transplantasyona organan di navbera kesên zindi tenê ji bo kesên mirovên hev tê dayin. Lê ji ber çêkirina dokûmentên sixte rêjeya transplantasyona di navbera kesên sax û ne mirovê hev de ji sedi 40 zêde bûye.

"China Daily" ragihand ku Hikûmeta Çînî niha bi hevkariya Xaça Sor ya Navnetewi di nav hewldanên amadekirina sistemeki nû ya belavkirina organan li ser kesên nexweş de ye, ji bo ku pêşî li bazirganiya reş û sextekariya bigre.

**Dr. Jutta von Freyberg:**

# “Ich habe mein Herz an Kurdistan verloren”



(Wêne: Rûdaw)

**İsmet Siverekli**

**Berlin (Rûdaw)** - Dr. Jutta von Freyberg li Almanyayê li ser xebatên zanîstî yên di derheqê çepgerîyê de wek jineke otorîter tê naskirin. Ew di Partiya Çep de (die Linken) projeyên zanîstî birêvedibe. Gelek caran serdana Kurdistanê kiriyê û bûye evîndara erdnîgara Kurdistanê. Tirkî û kurdî dizanê. Dr. Jutta von Freyberg, ji Rûdawê re li ser xebatên xwe yên çepgeriyê û serdanên xwe yên Kurdistanê axivî. Freyberg diyar kir ku, wê pirtûkek li ser gelê Kurd û Kurdistanê amade bike.

Ew di derbarê pirsa ”Çepgerên Alman di derheqê pirsgirêka Kurd de çi difikrin?” de dibêje ku çepgerên Alman, li hemberê pirsgirêka Kurd pasîf dimînin. Ji bo vê yekê jî, dewleta Alman li pirsgirêka Kurd bi çavê dewletên dagirker mêze dike. Piştî têkçûna reel sosyalîzmê, di nava çepên Alman de, pirsgirêkên bîrdozî derketin holê. Çepgeriya Alman, di nav van pirsgirêkan de fetisî û bi pirsgirêkên gelên bindest ve eleqeder nebû.”

Di sohbeta me de zêdetir min xwest ku ew behsa serpêhatiyên xwe yên li ser Kurdan bike: “Min Kurd û pirsgirêka wan di salên 80’an de naskir. Di wê demê de min rojnamevanî dikir û li Tirkiyeyê derbeya leşkerî çêbûbû. Gelek şoreşgerên Kurd mecbûr mabûn ku welatê xwe biterikînin. Ji wan kesan hinek hatin Almanyayê û min li vir ew kes naskirin. Di encama van têkiliyan de min Kurdek naskir û ez pê re zewicîm. Piştî zewacê min gelek car serdana Kurdîstanê kir û li ser rewşa wan gelê Alman agahdar kir.”

Meraq dikim, gelo li Kurdîstanê cara yekem çavderiyên wê çawa bû û li ser wê çi bandor hiştibû? Wek ku li benda pirsek wiha be, bi heyecan dibersivîne: “Di geşta min a yekem de; civata Kurd civateke feodalî bû. Di civatek wiha de çawa dibe ku keçên Kurd bi xortan re li ser çiyê di nav şer de cîh digrin. Vê yekê bandoreke mezin li ser min hişt.”

Gotin gotinê vedike û em li ser erdnîgara Kurdistanê diaxifin: “Erdnîgara Kurdistanê, ji mêj ve ye bo min balkêş e, li ser her bostek erdê wê, dîrok û şaristanî heye. Herwiha têkiliya bi Kurdan re, dostanî û gotûbêja wan, li cem min xwediyê taybetiyeke mezin e.”

Di sohbeta me de bi Almanî dibejê: “Ich habe mein Harz an Kurdistan verloren / Kurdistan dil ji min bir.” Gelo sedemên evîna wê ya erdnîgara Kurdistanê çinê? Ew wiha bersiv dide: “Gelê Alman, Kurd û Kurdîstanê ji romana Karl May ‘Durch Wilden Kurdistan’ nasdikin. Min jî cara yekem Kurd û Kurdistan ji vê romanê naskir. Dawîyê derfet derketin û min Kurdistan bi çavê xwe dît û bûm heyrana erdnîgara Kurdistanê. Nepenîya erdnîgara Kurdistanê, min kir heyrana xwe û ez bûm evîna wê.”

Dr. Jutta von Freyberg, herwiha bi wêneyan re jî mijûl dibe. Di geşta xwe ya Kurdîstanê de gelek wêne kişandibû. Ji me re hinek behsa van pêşangehan dike: “Wêneyen ku min kişandibûn, bi navê ‘Di navbera şer û aşitiyê de Kurdistan’ pêşangehekî lidarxist. Min wêneyên xwe, li hêla Çiyayê Agirî, li derdora Gola Wanê û Çiyayê Sîpanê kişandin. Di wêneyan de xala sereke, hejariya zarokên Kurd û xweşikahiya erdnîgarîya welatê Kurdan bû.”

Hînbûn, sazîyeke Almanî yê û li Berlînê li ser pirsgrêkên jinên Kurd xebatê dimeşînê. Dr. Jutta von Freyberg, li vê derê di nav xebatê de yê. Jê dipirsim: Çima li cihekî din na, li Hînbûnê xebat dikî?

Dikene û wiha bersiv dide: “Li Berlîn, Spandauyê cîranên min bi giranî Kurd in. Bi saya wan min Hînbûn naskir û heta îro li wir dixebitim. Ez xwe di nav biyanîyên ku li Berlînê dijîn de nêzîkî Kurdan dibînim. Gelê Kurd û Kurdîstan di dilê min de cîhek taybet digre û dilê min ji bo Kurdan davê.”

Çend sal berê, li Enstîtuya Kurdî a Berlînê jî xebatiye. Xwestiye ku li ser dîrok û edebiyata Kurdan xebatên zanistî lêkoline. Tevahiya projeyên ku li ser vê yekê amade kiribû, ji alîyê dewleta Alman ve nehatin pejirandin. Dr. Jutta von Freyberg, bi kurdî helbest û çîrokan jî dinivîse. Her cara ku ew çuye û hatiye, tiştek nivîsandiye; Çîroka Tamara û şivanê ku serboriya wî li Dêra Axtamarê derbas dibe, Melayê Cizîrî û hwd… Helbest û çîrokên wê, bi kurdî di Kovara Hîwa de hatine weşandin. Ew dixwaze, di derbarê gelê Kurd û Kurdistanê de pirtûkek amade bike.

Ew di nav çapemeniya Alman de jî gelek salan xebatiye. Meraq dikim û jê dipirsim: Gelo wek rojnamevanek Alman, çavdêriyên we li ser Kurdan çawane? Ew vê pirsa min bi awayek taybet dibersivîne: “Gele Alman dema here şoreşê jî, bêbilêt siwarî wesaîtê nabe. Berê divê biletên xwe bigrin û dûre jî biçin şoreşê. Ev taybetmendiyek gelê Alman e. Li cem Kurdan tiştek bi vî rengî nîne. Kurd dema di nava çalakiyekê de bin tu rêzikan nasnakin. Rojekê min ji Kurdekî pirsî: ‘Hûn çima guh nadin qaydeyên trafîkê?’ Pirsa min wiha bersivand: ‘Heger em li gor qaydeyan bilivin, wê demê emê zindîtiya xwe wenda bikin. Dewleta Alman nasnameya siyasiya Kurdan wek fermî nasnake.’ Kurd bi vê helwesta xwe dixwazên li Almanyayê werin naskirin. Ev taybetiya Kurdan, li ser min bandoreke mezin çêdike.”

**Rojnamevanê Hollandî Arnold Karkens:**

# Jahrfiroşê Helepçeyê mezintirîn tawanbar e



(Wêne: Rûdaw)

**Şevîn Dewlemend**

**Hollanda (Rûdaw)** - Rojnamevanê Hollandî Arnold Karskens dibêje dema Saddam Huseyin mijûlî qirkirina Kurdan bû, karesata Helebçe Kurdan bi cîhanê nasand. Rojnameger Karkens di rojnameya ‘The Peres’ a Hollanda de dixebite û li Brukselê dijî.. Nivîsarên Karskens yên li ser jahrfiroşê rejima Saddam Van Anrant dibin belgeyên bihêz. Di darezandina jahrfiroşê karesata Helepçê de ku 17 salan cezayê zindanê girt, yek ji rola sereke Arnold Karkens lîstibû.

*Te çawa Van Anrant nas kir?*

Cara yekem min ew di dema Şerê Kendavê yê sala 1991an de li hotela Reşîd nas kir. Ji ber ku me nedikarî herin derveyê otelê, em ji neçarî bi hevre radibûn û rûdiniştin. Van Anrat bi radyoya destî bala min rakişand. Çunkî wê demê qedexe bû ku kesekî radyoyê hil bike. Ez çûme pêşberî wî û min pê re axivîm. Wê demê Frans gelek tiştên balkêş ji min re got. Tenê tişta ku tê bîra min ew bû ku digot di wî şerî de Saddam Huseyin heq e û Amerîkî ne heq in. Wî jimareyek da min û ji min re got ger çêbe piştre pêwendiyê bi vê jimare telefonê bikim û ji wan re bêjin ku rewşa Frans pir baş e.

*We ji bo wê jimarê telefon kir?*

Piştî sê mehan min ji hevkarekî xwe yê Îspanyayî bihîst ku Fransek heye ku hin car xwe wek Almanî û hin car jî xwe Hollandî dinasîne û pêwendiya wî bi êrîşên komkuj bi çekên jehrdar re heye. Ew yek bû sebeb ku ez fikirîm dibe ew her Fransê min xwe be û min lêkolîn li ser wî da destpêkirin. Min jimara telefonekî hebû. Di ew karê herî gêlane be ku Van Anray encam dabe. Ji ber ku ger ew jimare nedabaya min, reng e ew bihata bîr û fikra min, lê tu min çê nedibû. Dema min ji wê jimarê re telefon kir, jina wî berê bersiv da û gelek tişt ji min re behs kir, lê derbarê wê yekê ku Van Anrat çi dikir ku nekarî di Iraqê de tu tiştî eşkere bike û tenê jimara dayik û bavê xwe da min.

*Piştî wê Van Anrat dît?*

Belê min dît. Ew di taxekî Baasiyan de dijiya û ji min re pir xeter û metirsîdar bû ku herin li deriyê mala wî bixim. Lê bi her hal min dizanî çi kiriye û çi nekiriye. Min çend tişt li ser wî nivîsîn, piştre min bi ligel çend hevalan re axifî û ew belgenameyên ku bo şopandin û binçavkirina wî pêwîst bûn, ketin dest min.

***Niha derdikeve holê ku Van Anrat mirovê Saddam bûye. Gelo tirsa te tunebû ew li pey te bigerin û hewla êşandina te bidin? Ji ber ku bi qasî em bizanin, te piştre tiştên din jî li ser wî nivîsîn?***

Ez ditirsiyam, lê baweriya min wisa bû ku ew tiştên min naxwînin, yan ger bixwînin jî, dibêjin ew kabra şêt û dîn bûye. Qet jî tu kesî di vê derbarê de bi min re neaxiviye. Lê dizanim ger tiştek bizaniya sedî sed dê tiştek bianiyana serê min. Ji ber ku eger Rejîma Saddam bizanîbaya tu mijûlî tiştekî yî, qet ew şaşî nedikirin ku dev ji te berdin û tu bikarî bi serbestî ji Iraqê derbikevî. Ew karê min jî nimûneyekî lêkolîna rojnamegerî ya demdirêj e ku encamên wê cezakirin kesê ye ku vekolîn li ser kiriye kirin. Ev ji bo malbata goriyan tiştekî xweş e, lê bo min jî wek rojnamegerekî pir xweş bû. Çunkî min zanî ew mandîbûna ku min kişand, belaş neçû û encamek erênî hebû. Hin car bi kîfekî tejî diçûm û bi destê vala vedigeriyam. Yan sê hefteyan diçûm bo seferê, tenê ji bo ku çend hevoka bidest bixim, pişre jî ew çêbû ya ku min dixwest. Nêzîk 17 sal cezayê girtîgehê bo Van Anrat birrîn.

***Ya di Helebçe de çêbû, tu wek jenosîd dizanî?***

Di Parlamena Hollanda de derbarê wê yekê gotûbêj hatiye kirin û Van Anrat bi wê sedem ku di tawanên cengî de beşdar bûye, hatiye cezakirin. Lê bûyerên sala 1988an ên Helebçe wek jenosîd nehatine naskirin. Ew pirsek akademîk e, lê jenosîd e û çima ne ew e? Ez dizanim ku komkujiyên Bosnya wek jenosîd tê temaşekirin, lê bi nerîna min Helebçe jînosaydek ji wê mezintir e. Ji ber ku bûyer hat serê hemû kesekî. Li Bosna jenosîd tenê hat serê mêran, lê li Helebçe ji ber ku gaza jehrdar hatib bikranîn, Saddam dixwest hemû kes bi temenê cuda were kuştin û pirs zêde ji holê rakirina neteweyekê bû. Her çiqasî ez ne yasanas im, lê ya ku di Helebçe de rû da, bi baweriya min jînosaydeke tewaw e. Ji ber ku Saddam tenê gaza jehirdar nerijand, belku xelk jî gulebaran dikir û gund dirûxndin û kavil dikirin, anku dixwest gelekê jenosîd û qir bike.

Ji bo îtirafkirin bi komkujiya Helebce, pêwîst e Kurd wek neteweyeke bihêz doza wî tiştî bike, nek wek grûbên cuda cuda û bi tenê û biçûk. Ji ber ku giring e kî daxwaza îtirafkirin bi jînosaydê dike. Temaşe bike, Cihûyan wek gel daxwaz kirin û xwesteka xwe bidest anîn. Ger Kurd jî yekdeng bin û bo komîteyên cuda cuda pirsgirêkê biçûk nekin, dikaribin li ser asta navdewletî de destkevteke zêdetir bidest bînin.

***Parlamenterê Hollandî, Hary Van Bomli, di hevpeyvînekê de ji me re got, ‘Dewleta Hollanda newêre Karesata Helebçe wek jenosîd nas bike, çunkî ji qerebûkirina maddî (dirangî) a goriyan ditirse.’ Hûn bawer in ew yek rast be?***

Bê guman wê yekê jî rolê dilîze. Ji ber ku yên ku di siyasetê de ne herdem dipirsin divê ew bi çiqas pere li ser me bibe mal. Bo nimûne heta niha îtiraf bi Jînosayda Ermeniyan nehatiye kirin, lê ya ku divê tu bikî ew e ku pirsê wisa jê bike ku bikevî acêndaya wan siyasetvanan. Pir car rasî ji bo hin welatên wek Tirkiyê û heta welatên Ewrûpa jî gelek tahl in.

# Barê ”Arctic Sea” rokêt an jî êzing bûn?



**Rûdaw (Köln)**

Keştiya Fînlandî ya ku meha borî hatibû revandin û demekê winda mabû û paşê ji aliyê hêza deryayî ya Rûsyayê ve hatibû ditîn, herkû diçe pirsên nû peyda dike. Barê keştiyê ku di navbera Fînlandiya û Cezayîrê di rê de bû bi fermî êzing bûye, lê tê îdiakirin ku keştiyê rokêtên artêşa Sovyetê ji depoyên Rûsyayê vediguhaztin Koreya Bakur an jî Îranê.

Li gor agahiyên ji Wezareta Parastinê ya Rûsyayê keştiya Fînlandî roja 24’ê tîrmehê li Deryaya Baltîk ji aliyê 8 rêbiran hatiye zeft kirin. Rojnameya ‘Moskowski Komsomolez’ daxuyand ku piştî rehîngirtina keştiyê bi giştî 20 îstixbarat ketine nav lêgerîna keştiya, di nav wan de îstixbarata leşkerê ya Rûsyayê û NATO jî. Keştiyeke leşkerî a Rûsî 17’ê tebaxa 2009’an li berava Kapverden – ku 460 km li rojavayê Afrîkayê dikevê – rastî keştiya zeftkirî hat û rêwîtiya 3 hefteyî bi dawî hat.

Pisporen leşkerî piştî windabûna keştiyê gûman dikirin ku barê keştiya zeftkirî ne tenê êzing bûye û îdia dikirin ku perçeyên krîtîk wekî alavên çêkirina bombeyên atomî û perçeyên rokêtan jî di nav barê keştiyê de bûn. Wekî çavkaniya gûmana xwe pisporen leşkerî ew hewlên mezin ku artêşa Rûsya û gelek îstixbaratên Ewrûpî di dema windabûna keştiyê de dimeşandin, nîşan dan. Ew dibêjin, eger ku bare keştiyê tênê ezîng bûye, karê ewqas sîxuran di lêgerînê de çi bû?

Kesên tewanbar jî bi riya parêzerên xwe zeftkirina keştiyê red kirin û ragihandin ku wan wekî kesên hawîrdorparêz li berava Swêdê kar dikirin, dema ku ew 24’ê tîrmehê ketin rewşekî xeter û ew jî aliyê keştiya Arctic Sea hatine rizgarkirin û ew pashê li ser keştiyê asê mane. Di destpêkê de Wezareta Navxwe ya Rûsyayê daxuyand ku di lêgerînên wan li ser keştiyê tiştekî bi gûman nehatiye dîtin, lê rojnameya ‘Moskowskij Komsomolez’ îdia kir ku li ser keştiyê sîleh jî hatine dîtin. Ew sîleh ên kê ne, an jî ji bo kê ne, ne diyar e. Wekî çavkanî rojnameya navborî derdorên dezgeha sîxurî ya Rûsyayê FSB nîşan da. Balyozê Rûsyayê li cem NATO’yê Dîmîtrîj Rogosîn jî li Brûkselê da xuyakirin ku ew tenê dikarê ji bo welatê xwe biaxife û gotibû: “Rûsya bi xwe tu alavên leşkerî bi riya keştiya Arctic Sea veneguhaztiye. Lê eger Fînlandiyan roket jî li barê keştiya navborî zêde kiribin, wê demê ew jî karî wan e.” Piştî daxuyaniya Dimitrij Rogosîn bi çend rojan cara yekem berpirsekî dozgeriya Rûsyayê daxuyand, ku ji bîlî êzingan tiştên din jî dikarên di nav barê keştiya de bin. Paş Rogosîn bi demekî kirt jî rayedarekî hêza deryayî ya Rûsyayê ji rojnameya nêzî Hikûmeta Rûsyayê ‘Komsomolskaja Prawda’ daxuyand ku îhtimal heye ku tiliya çeteyekî sîlehan ya Rûs-Baltîk di vî karî de hebe û belkî rokêtên X-55 jî di nav barê keştiyê de veşartibin.

# "Ez etno-mûzîkê diceribînim"




(Wêne: Rûdaw)

**Mehmet Sebatlı**

**Köln (Rûdaw)** – Stranbêj Rojan Delyar li Almanyayê dijî û jiyana xwe bi sê zimanan dimeşîne. Li mal kurdî, li kar almanî û li derve bi hinek dostên xwe re jî tirkî diaxife. Niha ew buye xwediyê albûmekî. Dema mirov rastiya wî, an jî çîroka jiyana wî bixwaze binivîsîne, wê encam wiha be: Kurdekî li Almanyayê dijî, di albûma xwe ya bi navê 'Hesretkêş im' de bi sê zimanan distire. Ev yek jî wêneyê wî ya hunerî ye. Li cihê ku mezin dibe, mûzîka etnîkî nasdike. Wê demê di mûzîkê de ne profesyonel e. Biryar dide ku ahengên mûzîka rojavayê bi amûrên (enstrûmentên) rojhilatê di nav albûmekî de bigihîne hev. Di CD'ya wî de 12 stran hene; mûzîk û gotinên 9 stranan wî bixwe çêkiriye. Beriya guhdarkirinê, dema mirov tenê li CD'ya wî dinêre xuyadibe ku karekî bi disiplin kiriye. Di bin hemû stranan de navên nivîskar, mûzîkvan û kedkarên din hene... CD, ji aliyekî din wek kolleksiyoneke navên naskirî ye. Mînak xwediyê gotin û mûzîka strana 'Hesretkêş im' Ozan Serhed e; 'Wekhevî' ji helbesta Hemreş Reşo hatiye amadekirin; nivîskarê 'Sultanê' Dr. Rodî ye.

Delyar hunerê wek 'multîkulti' binavdike. Muzîka wî jiber vê etno-muzîk e. Yanê nûjen û gelerî. Lewma di CD'ya wî ya yekem de hinek gotinên almanî û hinek jî tirkî hene. Herwiha ligel dengê keman û ûdê, dengê piyano, gîtar û saksafon jî tê guhê mirov. Em bi Rojan Delyar re li Kölnê axifîn...

***Tu mûzîka xwe di bin banê mûzîka kurdî de çawa bicîhdikî?***

Ez hunermendekî kurd im; muzîka min jî ya kurdî ye. Lê mûzika kurdî ya nûjen. Mînak, enstrumanên curbecûr bikartînim. Keman û ûd enstrumanên muzîka kurdî ne, ligel wan ez piyano, gitar û saksafonê jî bikartînim. Jiber vê ez muzîka xwe di beşa klasîk de nabînim. Ez li Almanya mezin bûm, min livir mûzik naskir û ji Popê bigire heta Hip-Hopê, Cazzê, Latînî gelek stîl guhdar kiriye. Ev jî bû bingeha min û niha ez di CD'ya xwe de ji vê bingehê sûd digrim.

***Tu rewşa mûzîka kurdî ya niha çawa dinirxînî?***

Mûzîka kurdî di hewldanê de ye. Hunermendên nû derdikevin û her yek ji aliyekî ve stîlên nû avadikin. Niha ji bilî mûzîka me ya klasîk, a nûjen jî heye. Hunermendên Kurd an li Ewrûpa dijîn, an li Bakurê Kurdistan, an li Başûr an jî li Rojhilat, hemû jî dewlemendiyek didine mûzîka kurdî.

***Ev yek gelo orijînala mûzîka kurdî naguherîne?***

Mûzîka kurdî ne tenê klasîk e û ne tenî ji dengbêjan pêktê. Mînak, 30 sal berê dema ku Şivan Perwer derket, tenê dengbêj û çend hunermendên lokalî hebûn. Şivan stîleke nû daye muzîka kurdî. Niha jî bi enstrumanên nûjen mûzîka kurdî xwe nû dike, geş dike û pêsve dibe. Eger guhertin tunebe wê mûzîka me qels bimîne û wê tenê Kurd guhdar bikin.

***Ewrûpî mûzîka kurdî guhdar nakin?***

Guhdar bikin, heskirinê wê jî heye. Lê dema em bixwazin gelên cihanê mûzîka me nasbikin û wek alîgiran guhdar bikin divê ew hinekî xwe di mûzîka me de bibînin. Çima em bi enstrûmanên mûzîka kurdî car caran almanî, îngilizî nestirin? Çima bi kurdî lê bi esntrûmanên nûjen em nestrin? Wiha em dikarin mûzîka xwe li cihanê bidin nasandin.

***Tu dixwazî kî mûzîka te guhdar bike, an wek tu dizanî kî te guhdar dikin?***

Bi taybetî naxwazim grûbek an jenerasyonek an netewek tenê min guhdar bike. Wek ez dibînim ciwanên Kurd ên ku li Almanyayê dijîn bêhtir ji strana 'Yar' hezdikin, jiber di wê stranê de hinek bi almanî distirim. Herwiha mirov dikare strana 'Haho dikim' wek Hip-Hop binavbike. Di strana 'Rabe' de ez gel rexne dikim. Strana 'Hesretkêş im' oryantal e; strana 'Dilyar im' jî stîla Latîn e. Lewma dikarim bêjim muzîka min etno-mûzîk e.

***Pêşerojê de dixwazî mûzîkeke çawa biceribînî?***

Ji bo pêşerojê pilanên min hene. Dixwazim hertim berhemên nûjen avabikim; jiber ku hestên min nûjen in. Di konser û şahiyên Kurdan de, herwiha di nava Almanan de dixwazim cîhbigrim. Herwiha ezê hewlbidim ku di mûzîka xwe de hîn zêdetir tarza Ewrûpî xurt bikim û ne tenê di nava stranekî de çend gotin, lêbelê bi almanî zêdetir bistirim. Dema ku gundar bikin bila biyanî nemînin, hinek fahmbikin da ku aciz nebin. Bi vî awayî ez bawer dikim ku ji mûzîka kurdî re sempatiyeke mezin cêbibe.

***Ji Almanan eleqe heye?***

Belê; ez di saziyeke fermî ya Alman de kardikim. Gelek nasên min hene, albûma min dikirin, mûzîka min diecibînin. Ji bilî wan, Funkhaus Europa du car bi min re hevpeyvîn lidarxist û mûzîka min diweşîne.

# "Ez kilameke melûl im"



**Oldenburg (Rûdaw)** - Pirtûka nivîskar Eskerê Boyîk ya bi navê "Ez kilameke melûl im" li Amedê ji nav Weşanên Dengê derket. "Ez kilameke melûl im", ji 106 helbestên melûl, kul, keder, xerîbî, azadî û bêrîkirinê pêk tê. Helbesta ku navê xwe daye pirtûkê bi van rêzikan dest pê dike:

"Ez kilameke melûl im
Li ser zimanê çîyayê ewrîn
Ez qeytkirî me û qûl im
Birîn im, birîn im, birîn."

Nivîskar Eskerê Boyîk di derbarê pirtûka xwe ya nû de ji Rûdawê re axivî. Boyîk armanca vê pirtûkê û helbestnivîsînê jî wiha got, "Bi pilanekê yan meremekî, armancekî xisûsî, ku min dabe ber xwe, ev pirtûk nivîsîbe, nîne… Sala ya xwe kiriye, wek gênctiyê ez û helbest ewqas jî şîrinê hev nîn in. Rast ez jê ditirsim… Wextê edî tê û pêsîra min digre, jê xilazbûn nabe, mecbûr wî çaxî em hevra rûdinên."

Di derbarê naveroka helbestên xwe de Eskerê Boyîk dibêje ku ew li ser gelek babetên jiyanê dinivîsîne, "Nikarim derheqa naverokeke rêk û pêk û armanceke xisûsî da bêjim. Naverok fire ye… Kî demê, bi çi hisê dilê xwera ketime şêwrê helbest „çê" bûne… Dijwerî, êş û nexweşiyên xerîbiyê, penaberiyê. Bîranînên rojên çûyî, hubên çûyî, hewas û meremên derbasbûyî…"

Eskerê Boyîk ku li Ermenîstanê li gundekî Kurd hatiye dinyayê, niha jî li Almanyayê dijî. Ew li ser rewşa weşan û belavkirina pirtûkên xwe bi gilî û gazinc e: "Nivîskarê Kurd yên ku li Sovyeta berê nexasim li komarê netewî de jîyane, dijwariyên weşandina pirtûkan rind dizanin. Li wir weşandina pirtûkekê ji bo nivîskarekî Kurd yê gênc "kursî, nas-dost û pişt" bi piraktîkî tiştekî nebûnê bû. Pirtûk bi sembola deshilatdariyê bû, loma bi destûra dewletê û bi dewletî dihat weşandin. Hilweşina sînorên Sovyêtê yên pola, vebûna derê Ewrûpayê em jî anîn gîhandin civaka Kurd. Tê bêjî hewcedariya me, nivîskarên Kurd bi xêra xelkê nema. Vê dawiyê weşenxanên kurdî çawa Ewrûpayê wisa jî li welêt pirr bûne. Kêmasî ew e sîyasî û armanca tomerî ya miletiyê, kurdewariyê di wî warî da hê tune. Hîn bazara pirtûkên kurdî çênebûye. Kitêbên kurdî gelekî giran tên firotan. Weşenxane mesrefa xwe dernaxin... Reklama kitêban tune..."

Boyîk ji pêşeroja wêjeya kurdî gelekî bi hêvî ye, lê rexne dike ku gelek caran pirtûkên pirr qels dertên, "Gereke rastî bê dîtin van salê dawiyê wêjeya bi zaravayê kurmancî gavên xweye hêja davêje. Kûltûra wergerê jî bilind bûye. Pirsgirêka weşanê ji bo gelekan giran in."

Li ser pirsa me ya "Gelo Kurdên Almanyayê çiqasî bi pirtûkên kurdî ve eleqeder in?", nivîskar Eskerê Boyîk destnîşan dike rewş ji berê baştir e, "Sal bi sal hejmara xwendevanan Kurd li Almanyayê zêde dibe..."

Lêbelê gazincên xwe ji partî û saziyên kurdan kêm nake, "Di vir de sûcê partî û saziyê Kurdan pirr e. Ewan rewşenbîriya Kurd jî ji hev tiş kirine, qetandine. Xwendevan jî ji hev dûr xistine".

# Kuştina zarokên Kurd li ser dikê ye

**Mêrsîn (Diha)** - Şanoya Uğur Kaymaz, ku di bin banê MKM-DER'a Mêrsînê de hatiye avakirin, buyera ku zarokên jiyana xwe ji dest daye bi navê 'Komkujiya Parqa Koşuyoluyê, kire şano. Şanoya Uğur Kaymaz difikire ku promiyera lîsteka xwe li Amedê pêk bîne.

Buyera ku Şanoya Uğur Kaymaz a girêdayî MKM-DER'a Mêrsînê, kiriye şano, di12'ê Îlona 2006'an de li Parqa Koşuyoluya Amedê pêk hatibû û bûbû sedema mirina 7 jê zarok û bi giştî 11 kesan. Di lîstika bi navê 'Komkujiya Parqa Koşuyoluyê de serpêhatiya zarokan, di heman demê de hêvî û daxwaza jiyanê ya zarokan jî tê destnîşan kirin. Lîstik bi coş û şahiya zarokên ku li Parqa Koşuyoluyê dilîzin destpêdike. Efserê Tirk yê ku bûye sedema qetilkirina zarokan ji di dest de termosek bombe lê hatine barkirin, li quncika parqê disekine. Piştî teqînê zarokên hatine qetilkirin bi Uğur Kaymaz (ku di 21'ê mijdara 2004'an de li Qosera Mêrdînê ji hêla polîsan ve hate qetilkirin) re tên cem hev. Zarok peyre li ser xeyal û cîhana ku dixwazin diaxivin.

Lîstik ji ber ku yekem car e komkujiyên li ser zarokên Kurdan dike mijara şano girîng e. Lîstika bi zimanê kurdî ye û ji hêla 9 zarokan ve tê lîstin. Ji beşa Şanoyê ya NÇM'ê Bêrîvan Şen lîstik nivîsandiye û birêve dibe. Ji lîstikvanan Bahar Seçmen diyar kir ku dixwazin lîstika xwe li Amedê bilîzin û her vaha hêviya cîhanek bê şer û herkes di nav aştiyê de bijî kir. Mervan Ekîncî jî diyar kir ku ew dixwazin êdî aştî û azadî bê. Rojda Uğurlu dibeje ji ber çêkirina lîstikê keyfxweşin û xwest ku herkes ji bo rawestandina komkujiyên zarokan di nava hewldanan de bin.






## Dewlet jî xewnan dibînin

Dewlet jî mîna kesan e. Bi vê yekê mirov dikare çi xisletan bide van dewletên ku welatê me di nav xwe de perçe kirine û nema destên xwe ji qepera me berdidin. Ne navê welatê me hiştin, ne azadî û aramî hiştin, ne jiyan ji me re hiştin, ne jî me karîbû em destên wanî hesinî ji derdora qirika xwe vekin. Armanc her û her qedandin e. Ji xewnekê diçin xewnekê. Wisa xuyaye ku dilê wan û şiyarbûnê jî tuneye.

**Xewna qedandina Kurdan bi zimanê wan**

Di nav vê xirecira dûrûdirêj de, ji nav pencê mirina ku erd û ezmanê me dagirkiriye, tenê zimanê me filitî. Ji nav derbên qedexekirin û zora li deştê, ji bin derbên artêşên generalên hov û bombebarana firokên şer, tenê ziman filitî. Herçend birîndar, westiyayî, şerpeze û serîşikestî be, lê dîsa jî bi rûbikenî hêzdaxwe û kirasê mirinê çirand. Niha jî ew dewleta qedexekar ku deşta welêt kiribû warê zorê, xwediya artêş û çekên ku mirina rojane bi serê çiyayên welêt ve dibarîne, xewna bidestxistina zimanê kurdî dibîne. Ziman maye, dixwaze wî jî ji destê me bigre. Televizyonkariya bi vî zimanî avête nav lingên Kurdan û pê re jî pere. Nivîskarên vî zimanî êdî têne kirîn. Nexasim ku piraniya wan hingî erzan jiyane û xwe erzan dîtine, êdî derfet ji wan re hate ber derî ku êdî vê carê ne belaş in û bi pereyên baş dikarin xwe pêşkêşbikin.

Ji bo hinek nivîskarên dûrî derî jî, mîna hinekên Swêdê, êdî ew çûn ber deriyê televizyona wê dewletê. Dewleta ku ji kesekî saxlem bêhtir dişibe kesekî nexweş.

Kesê şîzofren, xwîn bi devê wî ve hişk bûye. Çavekî wî li dermankirina birînên wî ye û çavê din li rijandina xwîna çiyê ye. Ew nexweş îro li ber kendalê tazîbûna dîroka xwe rawestiyaye û xewnekê dibîne. Dewletê, dereng be jî rola vî zimanî fêmkir, lê xwediyên wî zimanî hîna fêm nekirine. Hinek ji wan nema dizanin pê biaxifin. Hinek ji wan dizanin, lê zarokên wan nema dizanin. Hinek ji wan di ser guhê xwe re davêjin. Hinek jî dema peyva nivîskarên Kurd dibihîzin yekser tirkînivîs, erebînivîs têne bîra wan. Hinekên ku fêmkirine jî nema dikarin ji bin barê yêfêmnekirine derkevin.

**Xewna wekheviyê**

Di pêvajoya pêşdeçûna civakan de, lêkolîneran herdem qala şêweyekî wekheviyê kirine. Her ku ez peyvên wekheviyê û biratiyê ji aliyê dewleta Turkiyeyê yan jî Sûriyeyê dibihîzim, yekser ew şêwe tê bîra min. Ev şêwe jî ev e: Fîlekî, zirafeyekî û meymûnekî li ber dareke bilind di rêzê de sekinîne û di mafê hilkişandina ser darê de wekî hev in. Ew dar, dewlet e, xelkên wê jî mîna meymûnan dikarin yekser bi darê ve hilkişin û xwe wekî xwediyê darê nîşan bidin. Belengazê fîl û pepûka zirafê dimînin. Fîl, ne dikare bi darê ve hilkişe, ne jî jê re lazim e, wisa jî zirafe. Derfetên wekheviyê yên ku dewlet jî dide Kurdan mîna derfetên ku ji bo fîl û zirafê têne dayîn.

**Xewna biratiyê**

Wekî ku di wekheviya meymûn û fîl û zirafê de jidilbûn, di mijara biratiyê de jî jidil in. Ji dema ku ev dewlet çêbûne heta îro, ji ber ku mîna bira li Kurdan nerîne, xwestine birayên xwe jî bikin wekî xwe. An ku dewleta Tirk herdem xwestiye birayên xwe yên Kurd, mîna xwe, bikin Tirk. Wisa jî Ereb û Faris. Ji bo pêkanîna vî rengê "oryantalîst" ji biratiyê, çi ji dest wan hat, kirin. Bi çekên giran, bi ola Îslamê, bi kuştin û qirkirinê, bi feqîrkirinê û cerdevaniyê û niha jî bi zimanê kurdî. Dewleta Tirk xewna yek milet, yek dewlet û yek alê dibîne. Ev xewn kevin e, tenê ziman hatiye guherandin. Me di destpêkê de gotibû, dewlet jî mîna kesan in. Eger ev beramberî rast be û em Tirkiyê, Sûriyê, Îran û Îraqê bînin bîra xwe, wî kî karibe hejmara nexweşiyên wanî psîkolojîk, ku di kesên serok û serokwezîrên wan de xwe didin der, bihejmêre. Ez vê bersivê ji we re dihêlim.



# Di navbera Kurdbûn û Tirkbûnê de asê mame

**Devrim Sevimay**

Hülya Avşar xwe wek melez dibîne. Vê rewşê ji wiha rave dike: "Di aliyê dayika min de Giritî heye, koçerî heye. Aliyê bavê min ji Kurd in, yanî em malbateke têvlihev in. Ya rastir em tam Anatolya ne û ev ji gelekî li hesabê min tê..." Hülya Avşar ji Milliyet ê re pirsên Devrim Sevimay bersivandin.

*Hûn Kurd in yan Tirk in?*

Temenê min 11-12 sal bû. Wê demê mala me li Enqereyê bû. Li ber neynikê min li xwe temaşe kir, min dît pizikek li ser rûyê min heye. Yekser çûm, min ji dayika xwe pirsî: 'Dema ez biçûk bûm nexweş ketime û ev birîna wê ye dayê?' Dayika min got: 'Na, navê wê pizika şerqê ye.' Min jê pirsî 'Wateya pizika şerqê çiye?' Niha baş nayê bîra min ka dayika min çi got.

*Wate ev bû sedemek tu wê pirsê ji xwe bikî?*

Piştî ku min ev çîrok bihîst 'wê herêmê' zêdetir bala min dikşand. Vê ji wiha kir ku zêdetir vekolin û pirsan ji xwe bikim. Çima navê bapîrê min Apo ye? Çima ji bavê dayika min re dibêjin Daduk? Navê xwişka min Leyla ye, lê bi Mişk diba kirine, navê bavê min Celal e, lê bi Elo bangî wî dikirin.

*Gelo di nav malbata we de tu qet hatiye ihmal kirin, an jî ji ber wêya ku dayika te Tirk bû te hest bi wêya kiriye, ku tu 'ji wan fam nakî'?*

Na, gelekî xoşewist bûm, hertim piştgiriya min dikirin. Ji bilî vêna ji di wî warî de bavê min pir serdest bû. Yanî pir nigeran bû, lê berdewam ew nigeraniya xwe ji me vedişart. Bi taybetî niha hest pê dikim, ligel me gelekî bi hurî tevdigeriya.

*Çawa?*

Bavê min Kurdekî tûj û tîr bû. Hîç neheqiyek qebûl nedikir. Wate ew ji yek ji wan bû. Rêz li rewşa siyasî ya malbata xwe digirt. Ger derfet ji wan re çêbibûya dibe ku ew ji bi pey wan de biçûya.

*Bo ku diçû?*

Malbata min bi karê siyasî ve mijûl dibûn. Armanca wan ew bû rojek were serokwezîrê wî welatî bêje: 'Werin em dostayetiyê bikin. Bibin xweştiviyên hev. Bila kes canê kesekî din neşewitîne.' Hemû armanca wan ew bû wê rojê bibînin. Di encam de em di warê siyasî de malbateke kozmopolitîk in.

*Tu kurdî, yan tirkî?*

Heta niha ez qet li vêna nefikirî me.

*Lê iro ger ew pirsyar ji te bê kirin?*

Tirk im, lê Kurdbûn ji di min de heye.

*Gelo ji bo vêna destewajeya "Tirkî bi regez Kurd" maqul e?*

Belê, bi rastî Tirkayetî ji heye. Wê demê ka em li ser kaxezê Kurd û Tirk bibin ba hev. Wê demê bê guman emê destewajeyeke hevbeş bibînin.

*Çi sifeteki Kurdbûnê ji bavê te ji te re maye?*

Kurd li gor etnîkên din gelekî kêmtir rûbirûyê jinên xwe radiwestin û gelekî bi malbatên xwe ve girêdayî ne. Ew taybetmendî ji rast e û bandor li min jî kiriye. Dûyem ji stranên kurdî. Ger hemû roj jî nebe, bê şik 15 roj carekê guhê xwe didimê. Ev ji bo min pêwîstiye, jiber bi vî awayî mezin bûm. Bavê min li malê pir bi veşartî guhê xwe dida stran û kasêtên kurdî.

*Baş e, ji dayika te çi ji te re maye?*

Wek xelkê Balıkesir û Ayvalik gelekî kêfa min ji jiyanê re tê. Ji deryayê hez dikim. Geya û zeyta zeytûna li gor min pir xweş e. Ji aliyê bavê min ve jî ji kuliçên wan diminim ecêbmayî. Heta niha jî tama wî nanî bi rûnê metên min di devê min de maye.

*Wate tu dixwazê nivîşk û zeyta zeytûna tevlîhev bikê?*

Bê guman rewşa min ewe. Ez mesela cudakirina di navbera Kurd û Tirk, wekî qursikên bi rûn û zeyta zeytûna digirim dest. Di wê baweriyê de me ku bi milyonan wek min jî dayik bûne. Li Tirkiyê hezaran zarok hene ku heman hestê min bi wan re çêbûye.

### Ciwantirîn siyasetdemara Kurd:

# 'Divê baweriya mirov bi xwe hebe'



**Emrah Kocahal**

**Köln (Rûdaw)** - Zelal Kaya keçeke Kurd e û li Almanya dijî. Ew yek ji ciwantirîn endamên Partiya Sosyal-Demokrat ya Almanya SPD'ê ye. Zalal demeke ku di nav SPD'ê de ye û bi amedekariyên hilbijartinên parlamena Almanyayê di 27'ê îlonê de, mijûl e.

Zelal a 20 salî li Bakûrê Kurdistanê, li navçeya Gimgimê ya Mûşê ji dayik bûye. Di dawiya sala 1999'an de ligel malbata xwe hatiye Almanyayê. Ji wê rojê û vir ve ew bi malbata xwe re li bajarekî biçûk ê nêzîkî Kölnê dijîn. Zelal vê gavê şagirta dibistana bilind e û diçe pola 13'an. Zelal dibêje ku armanca wê ewe ku sala bê hiqûqê bixwîne.

Li ser pirsa ka wê çima di nav SPD'ê û ne di nav partiyeke din cih girtiye, Zelal wiha bersiv dide: "Bi ya min nabe ku mirov ji siyasetê bes gazincan bike, an jî tenê lê binêre. Divê mirov bi xwe jî li ber xwe bide. Ji bilî vê çendê giring e ku mirov bi siyasetê re mijûl bibe, ji bo ku li Almanyayê demokrasî misoger bibe. SPD bi rabirdûya xwe û bi hişmendiya xwe ya di der barê dadiya civakî de roleke awarte dilize. Bê guman di vê rêya xwe de divê bê piştgirîkirin. SPD'ê gelek tiştên baş kirin. Wekî mînak di wextê xwe de SPD bû ku di parlamenê de bi dengên xwe li dijî bihêzbûna Hitler derxistibû. Siyasetê her demî bala min dikişand. Ji ber vê yekê min dixwest çalak bibim. Min xwe nêzîkî SPD'ê dît."

Li ser bibiranîna Zelalê ku li gor rapirsiyên dawî SPD niha di rewşekî nebaş deye û gelo SPD têk neçûye, wê wiha nêrînên xwe anîn ziman: "Ez di jiyana xwe de fêrî tiştekî bûm: Dema mirov bixwaze bigihîje armancekê, divê mirov pêşî bi xwe baweriya xwe pê bîne, beriya ku vê yekê ji mirovên din bixwaze. Berî her kesî pêwîst e em Kurd bizanin, ka dema mirov ji tiştekî bawer bike û hêviyên xwe bi tiştekî ve girê bide, ev tê çi wateyê. Baweriya min bi SPD'ê tê."

Zelal herwiha dibêje Kurdên derdorê wê bi awayê cur bi cur li xebata vê temaşe dikin: "Piraniya wan nizanin ez li wê derê çi dikim, yan jî ji bo çi dikim. Hinek jî hene ku gelek kêfa wan tê ku ez evqas integre bûme. Gelek caran jî min tê pirsîn ka çima SPD, lê ne partiya Die Linke. Xwedêgiravî ew ji bo Kurdan çalaktir in. Nizanim çawa digihin vê encamê. Bê gûman ji bo min jî giring e, ez tiştinan ji bo gelê xwe bi dest bixim, bi taybetî jî bo jinên Kurd, lê di rastiyê de nikarim li hizba ku zêdetirîn bi Kurdan re têkildar dibe, bigerim û tê de beşdarî bikim."

Li ser xebat û projeyên wan ji bo jinan û bi taybetî ji bo jinên Kurd, Zelal anî ziman ku jixwe siyaseta ji bo jinan wê zêdetir têkildar dike û ji ber wê jî ew di wî warî de berpirs e û wiha berdewan kir: "Çend projeyên me hebûn. Mebesta projeyekê ew bû ku em biyaniyên ku li Almanyayê dijîn li ser zewicandina bi zorê, tundiya nav malê û kuştinên namûsê agahdar bikin. Projeyeke din jî hizra min bû. Alman her dem doza integrebûnê ji biyanan dikin û dixwazin biyanî fêrî zimanê wan bibin. Lê ew jin wê çawa xwe fêrî zimanê almanî bikin û çawa li vir integre bibin, bê ku bi xwendin û nivisandinê bizanin? Ji ber vê yekê me kurseki fêrbûna xwendin û nivîsandinê vekir. Bi rastî serkeftineke mezin bû. Qurs şeş mehan dom kir û di encamê de ew jin hemû ji fêrî xwendin û nivîsînê bûn."



# Jinên Berçelanê aramiyê dixwazin

**Colemerg (Rûdaw)** - Jinên Colemergê li Zozanên Berçelanê tevî zordarî û zextan ji ji bo debara malbatên xwe hilbirînên spiyê berhev dikin. Jinên ku ligel gelek zordariyan kedê didin, dixwazin ku li ser xaka wan jî aramî hebe û bêtirs bijîn.

Zozanên Berçelanê ku bi bedewiya xwe ya rengîn bal dikişîne, di heman demê de ji bo bi sedan malbatan ji bûye çavkaniya debarê. Hemwelatiyên li Berçelanê sewalkariyê dikin, bi hilbirînên spî, yên wek mast penîr, keşk û hiriyê debara malbata xwe bikin. Bi sedan malbat ji bo sewalkariyê her sal derdikevin Berçelan û jin 5 mehan li Berçelanê diminin. Bêrîvan heta êvarê di bin şertên dijwar de li aliyekê pêxwarin, mast, keşkan çê dikin û li aliyê din jî sergî û bişkûlên pez ji bo şewatê didin hev. Zozanên 37 kilometre dûrî navenda Colemêrgê ne, di heman demê de wek seyrangeha havînê jî tê bikar anîn. Demekê derdora Gola Berfê ya Seyitxan dibû mekanê bi sedan kesên derketine zozanan geşt û seyranê. Lê piştî di sala 1994'an de derketina zozanan hat qedexekirin, kes nekare derkeve Berçelanê. Piştî di sala 1999'an de qedexe hat rakirin cardin Berçelan heta sala 2006'an bû wargeha seyranê û cihê sewalkariyê. Lê piştî ev çend salên dawiyêye operasyon zêdebûn û cardin zordariyan destpêkir, hemwelatî aramiyê dixwazin. Li gel operasyonan jî gelek malbat ji bo debara xwe berê xwe didin Berçelan.

**5 mehan li Berçelan diminin**

Emine Ertuş diyar kir ku di bin şertên giran de derdikevin zozanan amadekariyên debara zivistanê dikin. Ertuş dibêje beşek van hilberînan difiroşin û beşek jî ji bo xwe radikin. Ertuş dibêje operasyonên leşkeerî wan nerihet dike û ew dixwazin dawî li operasyonan bê û aramî li ser xaka wan çêbibe.

Halime Bulut jî diyar kir ku sibê heta êvarê dixebitin û tevahiya xebatê li ser milê jinan e: "Berçelan çavkaniya debara me ye. Her çiqas dijwar be jî em jî vir hez dikin. Em xwe bextewar û azad his dikin. Em hem debara xwe dikin û em jî xwesa dibinin. Hilberînên xwe jî em beşek difiroşin û beşek jî dixin bin axê jî bo zivistanê. Lê jî ber operasyonan kêyfa vira wek berê nemaye. Berê gelek kes jî bo geştê dihatin lê niha jî ber operasyonan pir kêm bûne."

# HÎV jiyana 50 milyon jinan tehdîd dike

**Nihad Rojhilatî**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Karnas û pisporên tendurustiyê ragihandin ku nexweşiya HÎV'ê gefeki mezin li jiyana 50 milyon jinên Asyayî dike. Li gor pisporan ev nexweşiya her roj zêde dibe jî rojevê dernakeve û insanan ditirsîne.

Bernameya AIDS'ê ya Netewên Yekgirtî (UNAIDS) roja 11'ê tebaxa 2009'an raporekî nû weşand û balê kişand ser nexweşiya HÎV'ê ku bi taybetî li Asyayê bandorê jiyanê dike. Rapora 'UNAIDS' diyar dike ku ji jinên Asyayê zêdeyî sedî 90 tûşî wîrrûsaHÎV'ê bûne. Li gor raporê, demekê ev vîrûs ketiye nav bedena wan û bi riya pêwendiya wan a cinsî bi mêrekî re, ew mêr jî xeter digirin û vîrus dikeve canê wan ji. Herwiha tê gotin mêrên ku bi jinên din re bikevin pêwendiya zayendî û piştre derziyên maddeyên hişber li xwe bixin, zûtir vîrusê digrin.

Rêvebera Herêmî ya Saziya Pêşvebirina Netewên Yekgirtî, li Endonîzyayê ji bo jinên Asyaya Başûr, 'Cin De Chonha,' di konferansekê de derbarê nexweşiya AIDSê axivî û wiha diyarkir: "Divê hemû rêyên pêşîgirtinê werin ceribandin û meşandin ku jin di wê herêma cihanê de zêde tûşî nexweşiya HÎV'ê nebin. Ji ber ku pêvajoya vê dawiyê hemû karnas û pisporan nigeran kiriye."

Ligel ku xebat li dijî berfirehbûna Nexweşiya AIDS'ê di Asyayê de pêşde çûbin jî, jin barê giran yê wê nexwşiyê dikşînin. Li gor îstatîstîkên Rêxistina Netewên Yekgirtî, di sala 1990'an de, li Asyayê rêjeya jinên bi HÎV tenê jî sedî 17 bû, lê niha ew jimare gihaye nêzîkî sedî 40 û bi vî awayî nexweşiya HÎV'ê gefeki mezin li jiyana 50 milyon jinên Asyayî dike.

